# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 79 23 - 29 Mijdar 2015 basnews.com

SİNEMARDİN

**Mîhrîcana bajarê bê sînema!**



R15

## Ji kurdan re aramî nîne

# DAIŞ çû, Haşdî Şabî hat!




Hêzên ku ji serkeftina Pêşmerge û RHK'ê ya Şengalê aciz in, ji bo li Kurdistanê tevlîhev bikin vê carê jî milîşeyên şîa Haşdî Şabî ku ji alî Îranê ve têne motîvekirin û ji alî Iraqê ve têne fînansekirin li bajarê Tûzxurmatûyê bikartînin. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî got: "Kurdistan ne ew war e ku Haşdî Şabî tê de bi cih bibe" û hişyar kir ku ew ê rê nedin Haşdî Şabî ku Kurdistanê tevlîhev bike.

Milîşeyên Haşdî Şabî, ji alî generalê îranî Qasim Silêmanî ve bi şêweya Hîzbûllaha Lubnanê tê bi rêxistin, ji alî Bexdayê ve tê fînansekirin û ji bo berjewendiyên Îranê tevdigere. Gellek fermandarên Haşdî Şabî ji pasdarên ku fermandariyên hêzên milîşe yên Besîc ên Îranê kirine pêk tên. Haşdî Şabî, heta niha li hember DAIŞ'ê serkeftineke grîng bi dest nexistiye.

R02-3



R04

## Mesrûr Barzanî: DAIŞ'ê taktîk guhert

"Li meydana şer em dibînin ku DAIŞ lawaz bûye, lê belê ev ne nîşaneye ku pir lawaz bûye. Em dibînin ku hin qadên di dest wê dene têne rizgarkirin, ji bo terorekirinê taktîkên wê yên cuda hene, geşedanên dawî diyar dikin ku DAIŞ'ê taktîk guhertiye."

## Sait Çürükkaya: Serkeftina Şengalê dawîbûna DAIŞ'ê ye



"Operasyona Şengalê ji sê bereyên; başûr, başûrê rojhilat û rojhilatê bajêr destpêkir. Ez di bereya rojhilatê de bûm. Em ji rojhilatê bajêr ber bi bajêr ve çûn. Bi tenê Pêşmerge beşdarî operasyonê bûn."

R08-9

## Weqfa Barzanî: Ji bo Kobaniyê projeyên stratejîk

R10

## Ezdiyên Amedê: Em êdî nabin cîranê ereban

R13

## Şanoya kurdî li Amedê kom bû

R14



# DAIŞ nebû, fermo Haşdî Şabî!

Hêzên ku ji serkeftin û moralê Pêşmerge û RHK'ê ya Şengalê aciz in, ji bo li Kurdistanê tevlîheviyê pêk bînin vê carê milîşeyên şîa yên paramîlîter ên Haşdî Şabî ku ji alî Îranê ve têne motîvekirin û ji alî Iraqê ve têne fînansekirin li Tûzxurmatûyê xistin dewrê. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di derbarê provokasyon û destdirêjiyên Haşdî Şabî de got; "Tûzxûrmatû axa Kurdistanê ye û Kurdistan ne ew war e ku Haşdî Şabî tê de bi cih bibe" û hişyar kir ku ew ê rê nedin ku Haşdî Şabî li Kurdistanê tevlîheviyê pêk bîne. Barzanî ferman da Pêşmerge ku li Tûzxûrmatûyê kontrola asayîşê pêk bînin.

Milîşeyên xwebexş ên Haşdî Şabî, hêzek e ku ji alî generalê Îranê Qasim Silêmanî ve bi şêweya Hîzbûllaha Lubnanê tê bi rêxistin, ji alî Bexdayê ve tê fînansekirin û ji bo berjewendiyên Îranê tevdigere. Gellek fermandarên Haşdî Şabî ji pasdarên ku fermandariyên hêzên milîşe yên Besîc ên Îranê kirine pêk tên. Haşdî Şabî, her çiqas piştî ku DAIŞ'ê Mûsilê dagir kiribe hatibe damezirandin jî, heta niha li hember DAIŞ'ê serkeftineke grîng bi dest nexistine.

Çav li rê ye ku îran ji bo astengkirina aramiya Kurdistanê û nexşerêya serxwebûna HRK'yê, milîşeyên Haşdî Şabî bajo heremê û vê carê di navbera hêzên şîe û kurdan de şer derxîne.

### Piştî DAIŞ'ê êrîşên Haşdî Şabî

Piştî rizgarkirina Şengalê, hin serkirdeyên şîa bidestxistina Pêşmerge ya Şengalê wek dûbare dagirtinê nirxandin û piştî van geşedanan bûyerên li navçeya Tûzxûrmatû ku berê bi Kerkûkê ve girêdayî bû, lê di dema Saddam Huseyn de bi mebesta erebkirina şûnwarên kurd, bi Selahedînê ve hate grêdan rû dan. Haşdî Şabî'ya ku ji destpêkê ve li ser Şengalê di nav hewldanan de ye, piştî ji alî Pêşmerge ve hate rizgarkirin, tê gihîşt ku ew ê ji Şengalê encamek bi dest nexe, li Tûzxûrmatûya ku berê jî bi helwestên xwe yên neyênî hatibû rojevê rûdanên ku bi mirinan bi encam bû xêrnexwaziya xwe diyar kir.

Li Tûzxûrmatûya ku piraniya şêniyên wê kurd in, lê belê li gel kurdan tirkmen û erebên şîa û sunne jî hene, di 12'ê Mijdarê de piştî ku konvoyeke milîşeyên Haşdî Şabî di dema derbasbûna baregeheke Pêşmerge de nesekinîn û Pêşmergeyan ji bo ewlehiyê ew rawestandin pevçûn derketin. Piştî van pevçûnan, milîşeyên ku li nav Tûzxûrmatû ne êrîşî mal û dukanên kurdan kirin û rûdan li hemû navçeyê belav bûn.

Piştî ku mal û dukanên kurdan bûn armanca êrîşan, kurdan jî bi mebesta parastinê dest bi êrîşan kirin. Di encama pevçûnan de 12 milîşeyên Haşdî Şabî mirin û 20 jî birîndar bûn. Li gel 6 sivil 2 Pêşmergeyan jî jiyana xwe ji dest dan û nêzîkî 40 mal û 100 kargeh û dukkan jî hatin talankirin.

Di van pevçûn û rûdanan de milîşeyên Haşdî Şabî hin kurdên sivîl dîl girtin û Hêzên Asayîşê yên Pêşmerge jî gellek milîşeyên Haşdî Şabî û hin kesên ku bi milîşeyan re hevkarî kirine destgîr kir.

Piştî ku DAIŞ'ê bajarê Selahedîn dagir kir û Artêşa Iraqê ji herêmê reviya, Hêzên Pêşmerge Tûzxûrmatûya ku yek ji şûnwarên herêmên bi nîqaş ku di navbera Bexda û Hewlêrê de statuya wan nehatibû diyarkirin bû kontrol kir. Piştî ku navçe kete dest Pêşmerge çendek milîşeyên Haşdî Şabî jî hatin navçeyê û bi hatina wan re rûdanên mezhebî destpê kirin.

Piştî ku rûdanên li Tûzxûrmatû gihîştin asta xeternak serkirdeyê şîayên Iraqê Ayetullah Alî Sîstanî, Serokwezîrê Iraqê Haydar Îbadî û gellek siyasiyên grîng xeteriya bûyeran destnîşan kirin û ji bo dawî li rûdanan bê bang li rûsipî û aqilmendan kirin da ku bûyeran rawestînin.

### Peyman pêk hat dîl serbest hatin berdan

Piştî egera ku bûyerên li Tûzxûrmatûyê mezin bibin peyda bû, Pêşmerge li gor fermana Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî tevgeriya û dest bi hewldanên kontrola navçeyê kir. Piştî hewlên Pêşmerge, serkirdeyên şîa û tirkmenên Iraqê jî banga aramiyê kirin. Li ser vê yekê aliyê kurd jî ji wê bangê re bersveke erênî û hevditinan destpê kir. Di encama van hevdîtinan de aliyan, daxuyaniyeke hevpar dan raya giştî. Ji 12 Mijdarê ku bûyeran dest pê kiribû heta niha, aliyan lijne damezirandibûn û ji bo bûyer bi dawî bibin dest bi hewldanan kiribûn. Di daxuyaniyê de Fermandarê Tumena Tirkmen a Haşdî Şabî Yilmaz Naccar anî ziman ku berê li dij dîktatoriya Sadam û niha jî li dijî DAÎŞ'ê ew li gel kurdan têkoşiyane, ew ê bi kurdan re dijminahiyê nekin û ew ê bi hev re bijîn. Naccar piştî axaftina xwe biryarên hevbeş ên ku ji bo dabînkirina asayîşa Tûzxûrmatû hatine stendin ragihand. Biryar ev in: "Jji bo alozî bi dawî bibin lijneyeke ku wê pirsgirêkan ji hole rake û hêzên Pêşmerge û yekîniyên Asayîşê bi hevre li ser hevkariyê nêzîkî hev bike vere sazkirin. Ev lijne, wê ziyanên malbatên ku neferên wan hatine kuştin û birîndarkirin destnîşan bike, kesên bûne sedemê pevçunan diyar bike û ji bo cezayên xwe bikêşînin radestî dadgehan bike, ji bo kesên ku ji ber pevçûnan ji navçeyê koç kirine, derfetên vegerê peyda bike. Her wiha biryar hate stendin ku her dû alî jî dîlên di dest xwe de serbest berdin û ji bo ewlehiya navçeyê hêzeke leşkerî ku ji her dû aliyan pêk tê bê amadekirin û asayîş bê dabînkirin. Ev lijne her wiha ji bo mal û dikanên ku rûxiyane jî wê xebatên avadaniyê pêk bîne."

Di daxuyaniyê de berdevkê aliyê kurd û Endamê Encûmena Navendî ya YNK'ê Ednan Heme jî axivî. Heme spasiyên xwe pêşkêşî kesayet û berpirsên ku ji bo alozî bi dawî bibin helwestiyane kir û wiha dom kir: "Di nav dostên ku li dijî DAÎŞ'ê şer kirine nabe ku şerê hev bikin. Ji ber ku dijminê me hemûyan yek e, divê em pirsgirêkên nav xwe çareser bikin."

Her wiha jêderên herêmî ragihandin ku di nav Pêşmerge û komên komên çekdar ên navçeyê de hêzeke hevbeş a asayişê ku ji 140 kesan pêk tê hatiye avakirin û ev hêz wê ji hêzên polês ên navçeyê re bibin alîkar. Fermandarê Hêzên Pêşmerge yê Eniya Tuzxurmatû Timgeneral Baxtiyar jî diyar kir ku li gor peymana ku bi Haşdî Şabî re hatiye îmzekirin kurdên ku dîl hatine girtin wê serbest bêne berdan. Piştî wan geşedanan Fermandarê Haşdî Şabî Atif Necar jî di derbarê dîlan de ragihand ku piştî ev peyman hatiye îmzekirin her dû aliyan jî dîlên di dest xwe de serbest berdane.





### Fûad Huseyn: Rûdanên Tûzxûrmatû gumanbar in

Serokê Dîwana Serokatiyê ya RHK'ê Fûad Huseyn di derbarê sedem û geşedanên rûdanên li Tûzxûrmatû de ji BasNûçeyê re axivî û got: "Piştî rizgarkirina Şingal'ê, ev bûyerên ku li Tûzxûrmatû rû dan pir watedar in. Car caran li deverên ku ereb û tirkmen lê dijîn alozî û gengeşî rû didin, lê belê piştî rizgarkirina Şengalê ya Pêşmerge, pêkhatina van bûyeran cihê gumanê ye." Fûad Huseyn, li ser pirsa me ya, 'Sedemê ku derdorên YNK'ê, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û PDK'ê bi bêdengmayîna derbasbûna Haşdî Şabî ya axa Kurdistanê' vê bersivê da: "Li tu qadan pêdiviya Pêşmerge bi hêzên din ên derveyî Herêma Kurdistanê tune ye. Li gel vê jî angaştên bêdengmayîna li dijî Haşdî Şabî ne rast e û Serok Barzanî jî di peyama xwe ya di derbarê vê babetê de bersiva wan angaştan daye. Armanca sereke ya RHK'ê têkbirina DAIŞ'ê û gefa wê ya li ser Kurdistanê ye. Haşdî Şabî jî di şûna ku bela xwe li kurdan bixe, divê serê xwe bi têkbirina DAIŞ'a ku dijminê me hemûyan e biêşîne. Pêwendî û tekoşîna hevpar a me û wan wê çareseriya pirsgirêkên din ên herêmê jî hesantir bikin. Jixwe Haşdî Şabî bi armanca li dijî DAIŞê şer bike ava bûye û dijminê me ye hevpar DAIŞ e."

### Sirwan Abdûllah: ji bo heremên nakokbar zemina yasayî divê

Parlamenê Berê yê Lîsta Kurda a Parlamana Iraqê û Serkirdeyê YNK'ê Sîrwan Abdûlah jî di derbarê bûyerên Tûzxûrmatû ku piştî serkeftina Şengalê ya Pêşmerge pêk hatin û herêmên nakokbar ên ku statuya wan nehatiye destnîşankirin de bersiv dan pirsên BasNûçeyê. Sîrwan Abdûlah got: " piştî ku DAIŞ li Iraqê derket holê û herêmên nakokbar ên ku axa Kurdistanê ne ji alî Pêşmerge ve hatin bi destxistin, di navbera Pêşmerge û Haşdî Şabî'yên ku ji alî Hikûmeta Bexdmayê ve têne fînansekirin û ji alî Îranê ve têne organîzekirina de nakokiyan rû dan. Haşdî Şabî, di şûna ku bi DAIŞê re şer bike berê xwe da bajar û navçeyên kurdan ku di nav wargehên nakokbar de ne. Haşdî Şabî li çend ji van navçeyan hêzên xwe bi cîh kirin û xwest ku li van şûnwaran bibe xwedî gotin. Lê ji ber êşmerge van pêngava vala derxist bûyerên xurmatû destpêkir, ev ne yekem care li kerkûk û cîhên din ji ev hatibû ceribandin û Haşdî Şabî wê van pêngava bi domîne." Abdûllah wiha domand: " di 2003 an de bi hilweşîna rejîma Baasê re û bi qedandina zexteên rejîmê ji hev de xav bûn destpêkir, piştî têkçûna DAIŞê heremên gengeşayî wek defakto kete bin kontrola Pêşmerge lê divê bi qanûnî têkeve bin ewlehiyê. Ji gelheya xurmatû ji sedî 55'an zêdeetir kurd hene yên din jî şîa, tirkmenên sunne û erebên Şia nin. Hejmarên şia gelekî ji yê din kêmtire li gel vê Haşdî Şabî dixwaze bibe hêzek mezin lê pêşmerge destûr nade." Li ser babeta rayedarên YNKê jî Sîrwan Abdûllah wiha got: " Ne dema nîqaşên vala ye, dema yekîtiyê ye."



Serokê Hasdi Sabi Hadi Amiri

### Aştî Hawramî: Ji bo şerê DAIŞ'ê Piştgiriya fînansî ferz e

Bandeva 7. a Enerjî û Aboriya Lijneya Atlantîkê roja çarşemê li Stenbolê destpêkir û roja înê qediya. Di bendavê de Wezîrê Çavkaniyê Xwezayî yê Herêma Kurdistan'ê Aştî Hawramî axivî û got: " Şerê li dijî DAIŞê barekî girane li ser aboriyê, ji ber vê yekê RHK di pêdiviya bi piştgiriya fînansî de ye nefta Kurdistanê divê li bazara dinyê de de firotina wê berdewam bike."

Ji 40 welatî nêzîkî 600 siyasetmedar û rêveberên girîng tevlî Bandeva 7. a Enerjî û Aboriya Lijneya Atlantîkê bûbûn û Wezîrê Çavkaniyê Xwezayî yê Herêma Kurdistan'ê Aştî Hawramî jî hatibû vexwendin. Hawramî di beşa babeta bi navê 'Li Herêma Kurdistanê Enerjî' axaftinek pêk anî. Hawramî di axaftina xwe de da zanîn ku RHK'ê, ji aliyekî ve li dijî DAIŞ'ê şer dike, ji aliyên din ve jî hewl dide ku pêdiviya bazarên navneteweyî ya neftê dabîn bike û got: "Lê belê ji ber barê giran ê aborî yê şer, pêdiviya RHK'ê bi piştgiriya fînansê heye."

Di bandeva ku bi axaftina vekirinê ya Serokkomarê Tirkiyeyê Recep Tayyîp Erdogan destpê kiribû babetên grîng ên di derbarê şerê li dij DAIŞ'ê, kêmbûna buhayê neft û gazê, qeyrana aborî û siyasî ya li Ûkraynayê, geşbûna pêwendiyên navbera Îran û welatên rojava û bandora wê û hemû babetên ku ewlehiya enerjî eleqedar dikin hatin nîqaşkirin. Aştî Hawramî jî di roja dawî de axivî û got: " Li dijî DAIŞ'ê şer, penaberên ku hejmara wan ji sedî 30'yê gelheya Herêma Kurdistanê ye û para budceya RHK'ê ku Reveberiya Bexda naşîne dibe sedemê pirsgirêkên aborî û fînansî û ji ber vê yekê nefta Kurdistanê ji bo firotina bazara navneteweyî di rîskeke mezin de ye û ev qeyrana aborî nahêle ku am li dijî terorê bi rêkûpêk şer bikin."

Hawramî got: "Di 2014'an de bi dagirtina DAIŞ'ê ya Mûsilê RHK'ê bi bê derfetî û li gel hêzên hewa yê hevpeymaniya navneteweyî DAIŞ'ê ji bîrên neftê dûr xistin û di salekê de li hemû qadên şer DAIŞ paşve birin û rizgarkirina Şingalê mînaka herî dawî ye. Di van şerdan de me mûçeyê karmend û Pêşmergeyan bi 3-4 mehan derengî da û bi vî awayî şerê li dijî terorê ne pêkan e.

Razemendên pargîdaniyên neftê û xebatên di hilberandinê ji bo sala pêşîya me RHK'ê wê herikandina hezar varîl neft pêşdîtine lê ji bo em diravdanên pargîdana bikin pêdiviya me bi piştgiriya fînansî heye. Tekoşîna bi DAIŞ'ê re ne karê RHK'ê tenê ye, karê hemû dinyê ye. Di mehên pêşîya me de difikirim ku ji bo Pêşmergeyan rasterast alîkariya çekan em ê bigrin. Lê alîkariya çekan tenê jî ne bes e. Ji bo ku RHK'ê ji vê rewşa aloz rizgarbibe pêdiviya me bi piştgiriya fînansî heye."

### Khalilzad piştgirî da banga Hawramî

Hawramî da zanîn ku wê RHK'ê di 2016'an de dest bi henardekirina gazê jî bike da. Ji Serbalyozê berê yê Bexda yê YDE Zalmay Khalilzad piştgirî da banga Hawramî ya daxwaziya pistgiriya fînansî. Khalilzad wiha got: " Ger li dijî DAIŞê tê xwastin ku şerê bi bandor were kirin divê banga RHKê ya piştgiriya fînansî were bersivandin. Hilberandina hin bîrê nefta kêm bûne û ev jî pargîdaniyên hilberandinê dikin dixe tengasiyê." Khalilzad wiha berdewam kir : "Bi alîkariyên DYA û hevpeymaniya navneteweyî Pêşmerge, li qadên şer bi ser dikeve. Ev erênî ye, lê belê divê alîkariya fînansî û leşkerî zêdetir bibe."

## Barzanî: Cihê Haşdî Şabî li Kurdîstanê nîne

Pişti rûdana bûyerên li Tûzxûrmatûyê û angaştên hin endamên polîtburo û dezgehên ragihandinê yên YNK'ê ku goya Serokê RHK'ê û PDK'ê bêdeng mane ku Haşdî Şabî derbasî axa Kurdîstanê bibe de Mesûd Barzanî jî bi daxuyaniyekê bertek nişan da û got: "Tûzxûrmatû axa Kurdîstanê ye.

Barzanî di daxuyaniya xwe de ji bo bûyerên Tûzxûrmatûyê Heşdî Şabî tawanbar kir û bang li Pêşmerge û hêzên asayîşê kir ku Tûzxûrmatûyê kontrol bikin. Barzanî wiha got: "Tûzxûrmatû axa Kurdîstanê ye û cihê Heşdî Şabî di axa Kurdîstanê de tune ye." Barzanî destnîşan kir ku ji bo asayîş û parastina Kurdîstanê pêdivî bi hêzeke din tune ye û Peşmerge bes e. Di peyama xwe ya di malpera fermî ya serokatiyê de Barzanî li ser angaştên derdorên YNK'ê ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û PDK'ê ji daketina axa Kurdistanê ya Heşdî Şabî re bêdeng mane de jî got: "Helwesta Serokê RHK'ê ya li dijî Heşdî Şabî, beriya niha çawa be niha jî wisa ye. Li bilî hevkariya Pêşmerge û Heşdî Şabî ya li dij DAÎŞ'ê, em ê rê nedin tu kesî ku di axa Kurdistanê de karên nepenî û xeter pêk bînin. Ev hevkarî nayê wê wateyê ku em ê ji pêkanînên Heşdî Şabî yên Tûzxûrmatû bêdeng bimînin. Tûzxûrmatû axa Kurdîstanê ye û ne stargeha Heşdî Şabî ye. Hebûna Heşdî Şabî ya di axa Kurdîstanê de, ne bi destura Serokê RHK'ê pêk hatiye."

### Barzanî ferman da Peşmergê: Kontrolê pêkbînin

Milîşeyên paramîlîter ên Heşdî Şabî ku Hikûmeta Navendî ya Iraqê di daniştina Parlamenê ya ji bo budceya 2016'an a Çarşema çûyî de ji bo wan budceyeke 1 Trîlyon û 301 Milyar û 242 Milyon û 388 hezar dînar ku teqabulî 1 Milyar û 58 Milyon Dolarî dike terxandibû, di 12'ê Mijdarê de bûn sedema bûyerên çekdarî. Piştî ku xeterî mezintir bû Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ferman da Pêşmerge da ku erka xwe bê kêmasî bi cih bîne û li Tûzxûrmatûyê kontrola xwe pêk bîne.

Barzanî di fermana xwe de xwest ku Peşmerge erka xwe ya fermî ya dabînkirina asayîşa navçeyê bi cih bîne. Di daxuyaniyê de Barzanî got ku ev çend rojin di buyerên ku li Xurmatû de ji pêkhateyên neteweyî û mezhebî yên cuda gellek kes hatine kuştin û li dij mal dezgehên sivîlan destdirêjî hatiye kirin. Barzanî got: "Her dû alî jî cihe ku bi hev re şer dikin, divê bi hev re asayîşa navçeyê pêk bînin û li dij DAÎŞ'ê şer bikin.





Mesrûr Barzanî:

# DAIŞ'ê taktîk guhert

Mesrûr Barzanî di dîdariya li gel peyamnêrê Rojhilata Navîn ê BBC'yê Jim Muir de peyivî. Barzanî xemgîniya xwe ya ji bo êrîşên li Parisê anî ziman û got: "Ez bawer dikim ku ev êrîş ji bo şiyarbûna hêzên navneteweyî û têgihîştina xeteriya ku pê re rû bi rû mane bûye egereke baş. Hêvî dikim ku ev bûyer meşa leystikê biguherîne û hêzên navneteweyî di derbarê xeteriya DAIŞ'ê de bêtir hewl bidin, berpirsyariya xwe ya vê babetê bi cih bînin û li her deverên ku DAIŞ çalakiyan pêk tîne bergiriyan bikin da ku bûyerên wiha yên terorî careke din rû nedin."

Rawêjkarê Encûmena Asayîşê ya RHK'ê Mesrûr Barzanî, piştî serkeftina Pêşmerge ya Şengalê, êrîşên ku DAIŞ'ê li Parisê pêk anî, wek guherîna şêweyê şer ê DAIŞ'ê nirxand û anî ziman ku ew hêvî dikin ku ev êrîşên wê yên li Parisê bibin egera guherîna helwesta welatên Rojava ya li hember DAIŞ'ê.

Mesrûr Barzanî di dîdariya li gel peyamnêrê Rojhilata Navîn ê BBC'yê Jim Muir de peyivî. Barzanî xemgîniya xwe ya ji bo êrîşên li Parisê anî ziman û got: "Ez bawer dikim ku ev êrîş ji bo şiyarbûna hêzên navneteweyî û têgihîştina xeteriya ku pê re rû bi rû mane bûye egereke baş. Hêvî dikim ku ev bûyer meşa leystikê biguherîne û hêzên navneteweyî di derbarê xeteriya DAIŞ'ê de bêtir hewl bidin, berpirsyariya xwe ya vê babetê bi cih bînin û li her deverên ku DAIŞ çalakiyan pêk tîne bergiriyan bikin da ku bûyerên wiha yên terorî careke din rû nedin."

**"DAIŞ'ê taktîk guhert"**

Li ser pirsa, "Êrîşên Parisê nîşaneyên lawazbûna DAIŞ'ê ne yan na?" Mesrûr Barzanî, bersiva 'DAIŞ'ê taktîkên xwe guhert.' da û wiha dom kir: "Li meydana şer em dibînin ku DAIŞ lawaz bûye, lê belê ev ne nîşaneye ku DAIŞ pir lawaz bûye. Em dibînin ku hin qadên di dest wê dene têne rizgarkirin, ji bo terorekirinê taktîkên wê yên cuda hene, geşedanên dawî diyar dikin ku DAIŞ'ê taktîk guhertiye û ger ku pêşî lê neyê girtin ew ê çalakiyên bi vî rengî hin zêdetir pêk bîne."

**"Divê DAIŞ di warê leşkerî de bê têkbirin"**

Di nirxandina xwe ya di derbarê hewlên jiholêrakirina DAIŞ'ê de Barzanî destnîşan kir ku xala sereke ya ji bo têkbirina DAIŞ'ê xala leşkerî ye û dom kir: "Di warê leşkerî û jideststendina axê de têkbirina DAIŞ'ê hêmaneke pir grîng e. Berî her tiştî wê êdî navendeke wê ya ku terorîstên ji her deverên dinyayê ber bi xwe ve dikêşîne tunebe û ew ê vê bengîkêşiya xwe wunda bike. Her wiha ew ê nikaribe şêniyên erdnîgariya ku di bin kontrola wê de ye bi çek bike û wê derfetên zêdebûna hezkiriyên wê asteng bibin. Bi kurtasî; Di warê leşkerî de têkbirina DAIŞ'ê, hêmana sereke ya tekoşîna li dij wê ye. Lê dîsa jî ev nayê wê wateyê ku wê DAIŞ bi tevahî ji holê rabe. Ji bo careke din ev xetere rû nede, divê di nav hêzên navneteweyî de peymanên rasteqîn pêk bên. Ji bo astengkirina DAIŞ'ê, divê hemû rêgehên wê yên aborî bêne xitimandin û bi taybetî jî divê welatên Îslamî bi ser bîrdoziyên Îslama nerm, li dij DAIŞ'ê tekoşîneke ramanî bimeşînin. Ger ku hêzên navneteweyî ji bo şerê bejayî leşker neşînin jî, divê piştgiriyeke baş û têr bidine hêzên ku niha li dij DAIŞ'ê têdikoşin. Bêguman mebesta min Pêşmerge ye. Pêşmerge tekane hêz e ku dikare DAIŞ'ê paşrev bike û wê têk bibe."

**"Ji bilî axa Kurdistanê em naçin tu derî, lê belê..."**

Di bersivdana pirsa 'Kurd, tenê li ser axa xwe li dij DAIŞ'ê şer dikin. Gelo RHK'ê dixwaze bikeve axa ereb û sunneyan jî û kurd dikarin çiqas sînorên xwe berfireh bikin?' de jî Barzanî da zanîn ku sînorên jeopolîtîk ên RHK'ê hene û ew ê derbasî derveyî axa Kurdistanê nebin.

Barzanî, di derbarê vê babetê de nirxandinên xwe wiha domand: "Beriya ku em ji bo axa derveyî sînorê Kurdistanê bi DAIŞ'ê re şer bikin, divê em hin peymanan îmze bikin. Di vê babetê de pêdiviya me bi hêzên hevpeyman heye. Her wiha pêdivî bi hêzên ereb ên di şer de şarezane heye, lê belê ji bo hestiyariyên gelê herêmê divê ev hêz bi hendazeyî bêne hilbijartin û perwerdekirin."

**"Performansa Artêşa Iraqê têr nake"**

Li ser pirsa, 'Mebesta te ji hêzên ereb çi ye?' jî Mesrûr Barzanî wiha axivî: "Ger ku Artêşa Iraqê di asta ku wê dikaribe li dij DAIŞ'ê şer bike de be, pêdivî bi komên din namîne. Em performansa Artêşa Iraqê ya ku heta niha nîşan daye têr nabînin. Hin pêşketinan pêk anîbe jî, em bawer nakin ku wê Artêşa Iraqê bibe hêza diyarker a tekoşîna li dij DAIŞ'ê."

Li ser pirsa, 'Ger ku hêzên rojavayî peymanên ku hûn dixwazin îmze bikin, wê DAIŞ kîngê têk biçe? jî Barzanî wê bersivê da: "Ger ku hezên navneteweyî bixwazin ku li dij DAIŞ'ê tekoşîneke bi rêkûpêk bê meşandin û DAIŞ bê têkbirin, wê DAIŞ di çend mehan, heta di çend hefteyan de têk biçe."

*Wergera ji BBC Fatih Öztürk*







# Şengal niha birînên xwe derman dike

Piştî rizgarkirina Şengalê, ji bo vegera ezdiyan jinûve avakirina Şengalê jî kete rojevê. Qeymeqamê Şengalê Mehma Xelîl wiha dibêje: "Ne derfetên Hewlêrê ne jî yên Bexdayê ku Şengalê avadan bikin tune ne. Ji ber vê yekê divê li Hewlêrê konferanseke jinûve avakirina Şengalê bê lidarxistin û bi vê şêweyê bang li civaka navneteweyî bê kirin da ku alîkariya Şengalê bikin."

Di 3'ê Tebaxa par de piştî ku ji alî DAIŞ'ê ve hate dagirkirin, li Şengala mekana pîroz a ezdiyan, li dij ezdiyan komkujî û trejediyeke mezin pêk hat. Bi hezaran ezdî hatin qirkirin û dîl hatin girtin, bi sedhezaran jî di bin xeteriyeke mezin ji axa xwe reviyan. Piştî sal û nîvekê di 13'ê Mijdarê de bi operasyoneke mezin û berfireh Şengal ji alî Pêşmerge ve hate rizgarkirin, lê belê bi rizgarkirinê re erkên nû yên kurdan xwe dane ber çavan, lewre Şengal jî wek Kobanê kavil e û pirsa niha ku di serê kurdan de der bûye ev e: 'Gelo wê ezdî çawa dikaribin vegerin axa xwe ya pîroz?'

Di tofana ku ezdî wê wek fermana 74'an bi nav dikin de bi hezaran ezdî hatin qetilkirin, bi hezaran dîl ketin û bi sed hezaran ezdî di mercên dijwar de xwe gihandin bajar û herêmên bi ewle. Piştî rizgarkirina Şengalê, niha astengiya herî mezin ya vegera ezdiyan, kavilbûna navçeyê û trajediyên ku di birdanka ezdiyan de birînên derûnî peyda kirine. Ezdiyên ku di kêliya dagirtina Şengalê de, beriya DAIŞ'ê rastî îxaneta hozên ereb ên cîranên xwe hatin, naxwazin careke din bi wan re rû bi rû bimînin û ev yek jî astengiyeke din a vegera ezdiyan e.

**Qeymeqamê Şengalê Mehma Xelîl: Konferansa jinûve avakirinê pêwîst e**

Piştî rizgarkirina Şengalê, ji bo vegera ezdiyan jinûve avakirina Şengalê jî kete rojevê. Di derbarê vê babetê û babetên din yên Şengal û ezdiyan eleqedar dikin de Qeymeqamê Şengalê Mehma Xelîl, ji BasNûçeyê re peyivî. Xelîl amaje bi jinûve avakirina Şengalê kir, pêwîstiya çavkaniyeke mezin a aborî destnîşan kir û ji bo ev astengiyên li pêş vegera ezdiyan a Şengalê bang li civaka navneteweyî kir ku ji bo dabînkirina aborî konferanseke jinûve avakirina Şengalê pêk bînin. Xelîl wiha dom kir: "Ne derfetên Hewlêrê ne jî yên Bexdayê ku Şengalê avadan bikin tune ne. Ji ber vê yekê divê li Hewlêrê konferanseke jinûve avakirina Şengalê bê lidarxistin û bi vê şêweyê bang li civaka navneteweyî bê kirin da ku alîkariya Şengalê bikin."

**Sûda parêzgehbûna Şengalê**

Mehma Xelîl, anî ziman ku ger Şengal bibe parêzgeh, wê rewşa wê ya aborî baştir bibe, vegera ezdiyan bi leztir û zêdetir bibe û ya herî grîng jî wê pêşî lê bê girtin ku careke din li dij ezdiyan qirkirin û trajediyên mirovî pêk bên. Xelîl da zanîn ku ji bo parêzgehbûyîna Şengalê, beriya niha jî wan daxwaz ji hikûmeta Bexdayê kirine, lê belê êdî tu hêviyek wan ji Bexdayê nemaye. Xelîl grêdayîmayîna Şengalê ya bi ser Mûsilê ve wek xerabmaliya Şengalê nirxand û anî ziman ku ew ê ezdî vê yekê qet qebûl nekin. Xelîl amaje bi rewşa niha ya Şengalê kir û wiha bang li ezdiyan kir:

"Bila gelê me yê ezdî niha venegerin Şengalê, çimku bi vî halê xwe li Şengalê derfetên jiyanê tune ne. Ger ku xebatên avadankirina Şengalê destpê bikin û Pêşmerge parastina wê garantî bike, jixwe Wezareta Pêşmerge û berpirsên RHK'ê ew ê geşedanan ragihînin ezdiyan. Şengal jî weke Kobanê kavil û wîrane ye. Ji ber vê yekê ji bo avadankirina wê fînanseke mezin pêwîst e. Serokê RHK'ê Birêz Mesud Barzanî, Serokwezîr û berpirsên fermî yên RHK'ê ji bo dabînkirina fînansê her di nav hewldanan de ne. Her wiha ji bo ev hovîtî û qirkirina li dij ezdiyan hatiye kirin ji alî dezgehên navneteweyî û welatan ve wek jenosîd bê pesendkirin jî xebat û hewlên me didomin.

**"Di dest DAIŞ'ê de 3 hezar dîlên ezdî hene"**

Mehma Xelîl di axaftina xwe de pêwîstiya derxistina ji gundên ezdiyan a hozên ereb ên ku di dema dagirtina Şengalê de bi DAIŞ'e re hevkariyê kirine yan jî di navbera gundên van ereban û yên ezdiyan de danîna sînoran destnîşan kir û got: "Piştî ev çend trajedî û qirkirinan, derfetên derûnî yên ku ezdi li gel van ereban bijîn nemane û piştî têkbirina DAIŞ'ê, di encama lêkolînan de divê ew erebên ku bi DAIŞ'ê re hevkarî kirine û ezdiyan qetil kirine bêne cezakirin. Ez daxwaza sereke ya ezdiyan e." Di derbarê dîlên ezdî yên di dest DAIŞ'ê de jî Xelîl da zanîn ku ji 5 hezaran bêtir ezdî ji alî DAIŞ'ê ve dîl hatine girtin, ji van ezdiyan 2 hezar û 40 kes hatine rizgarkirin û nêzîkî 3 hezar ezdiyên mayî jî hê di dest DAIŞ'ê de ne. Mehma Xelîl got: "Lê belê em di derbarê jiyana 3 hezar ezdiyên ku hê jî dîl in ne agahdar in."

**General Îzedîn Seîd: Şengal parastî ye**

Fermandarê Alaya 12 ya Pêşmerge ya li Şengalê General Îzadîn Seîd jî di bersivdayîna pirsên BasNûçeyê yên di derbarê rewşa leşkerî ya Şengalê de da zanîn ku her çiqas ji alî Mûsilê ve carcaran êrîşên katyûşa û topan pêk bên jî, ev êrîşên qels ji bo Pêşmerge xeteriyê peyda nake û got: "Şengal parastî ye." Seîd, da zanîn ku hin ezdiyên ku ji bo mal û warê xwe kontrol bikin bi destûr têne Şengalê, lê belê niha li Şengalê derfetên jiyanê tune ne. General Îzedîn Seîd ragihand ku qadeke ku heta Gundê Sîno, Hecî Faziliyê û Til ezirê berfireh e di dest Pêşmerge de ye û anî ziman ku li gel vê yekê jî hin gundên ezdiyan hê jî di dest DAIŞ'ê de ne. Seîd destnîşan kir ku heta Mûsil neyê rizgarkirin wê heta astekê xeterî li ser Şengalê dom bike û dom kir: "Dîsa jî ger ku av, elektrîk û nexweşxane bêne dabînkirin, hin taxên Şengalê ku dikare ji bo jiyana sivîlan bêne amadekirin hene."

**"Bi PKK'ê re pirsgirêk hene lê ne di asta xeter de ne"**

General Îzedîn Seîd de derbarê amadekariyên parastina Şengalê de jî ragihand ku Pêşmerge li çepera Şengalê xendekan kolaye, eniyan çêkiriye û ji bo hemû xeteriyan amadekariyên xwe kirî ye. Seîd di derbarê hebûna PKK'ê û komên çekdar ên nêzîkî wê de jî van agahiyan da: "Di navbera van koman û Pêşmerge de pirsgirêk hene, lê belê ev ne di asta xeteriyeke pevçûnên çekdarî de ne. Beriya ku Şengal bê rizgarkirin berpirsên PKK'ê daxuyaniyan dan ku piştî rizgarkirinê ew ê hêzên xwe ji Şengalê vekişînin. Di derbarê vê babetê de di asteke bilind de hevdîtin û nîqaş didomin. Ew birayên me ne. Ji bo Şengalê ked dane, bedêl dane. Lê belê çawa ku Pêşmerge piştî rizgarkirina Kobanê vegeriya, divê ev brayên me jî êdî vekişin."

# Çeperên şer yên dijî DAIŞ'ê fireh dibin

Êrîşên DAIŞ'ê yên Parîs û Beyrûdê, şerê Sûriye'yê de çeperên nû yên dijî DAIŞ'ê vekirin. Piştî civînên Viyana'yê biryarên ji derbarê pêşeroja Sûriye'yê de hatin girtin, li aliyekê rizgarkirina Şengalê, li aliyek din jî êrîşên DAIŞ'ê yên tund li Beyrut û Parîsê, dîsa DAIŞ xist rojeva siyaseta dinyayê. Di guherîna hevseng û hevpeymanan, Sûriyeyê êrîşên li dijî DAIŞ'ê berfirehî didomin. Piştî DYA'yê û Rusyayê, Fransayê jî keştiyên şerî şandin Behraspî û di heman demê de êrîşên esmanî jî piştî êrîşên Beyrûd û Parîsê, li ser çeperên DAIŞ'ê yên Raqqayê bi awayek tund dest pê kirin. Tê şîrovekirin ku êdî çeperên şer yên dijî DAIŞ'ê li hemû dinyayê belavbûye.

Bi alîkariya Rusyayê, Sûriyeyê jî dijî hêzên muxalif dest bi êrîşan kiriye û her pêşve diçe. Rejîma Sûriyeyê hêzên muxalif ji dûrî bajarên Hama, Humus Helebê kirin û operasyonên xwe derdora Laziqiyê didomîne. Aliyek din jî piştî rizgarkirina Şengalê, hêzên kurd yên Rojavayê Kurdistanê li başûrê Hesekê bi ser DAIŞ'ê de girtin û bajarokê Hol û gelek gundên derdorê ji destê DAIŞ'a tundrew rizgar kirin. Rizkarkirina Holê û Şengalê rêyên DAIŞ'ê qut kirin û têkilyên DAIŞ'ê yên navbera Iraq û Sûriyeyê ketin xeteriyê. Her wiha hêzên hevpeymaniyê jî 200 ton çek dan hêzên kurd û hêzên kurd bera xwe dane Raqqa û Cerablusê. Her wiha tê şîrovekirin ku DAIŞ'a li qada şer têk çûye ew ê ji niha pêve zêdetir êrîşên DAIŞ'ê xwe li Rojhilatanavîn û Ewrupayê pêk bînin.

**Rejîm li Laziqiyê pêşve diçe**

Rejîma Esad bi alikaraiya Rusyayê a esmanî, li Firinlik û Avanli'ya derdora Çiyayê Etrak ê di destê hêzên muxalîf deye operasyonek berfireh didomîne. Rejîma Esad, heftêya borî operasyonek di derdora Laziqiyê dest pê kiribû û encama operasyonê de Bayirbucak û 50 gund di destê hêzên muxalif de derxisti bûn. Gundê nêzîkê Laziqiyê Gimam jî destê muxalifan de li aliyê rejîmê hatibûn kontrol kirin û alikariya Rusyayê ya esmanî jî devam dike. Li gorî agahiyên Artêşa Suriyeyê û hêzên Hizbûlla Çiyayê Etrakê yê di destê muxalifan de bidestxistine.

Aliyekê şerê tund didome, aliyek din jî cara yêkem rejim û muxalifan agirbesteke ku 15 roj bidime îlan kirin. Biryara agirbestê li rojhilatê Gutayê hatiye stendin.

**Esad: Heya ku DAIŞ hebe berdana min ne mimkun e**

Encama biryarên civîna Viyanayê ya heftêya bori ku qonaxa derbazî a ''girêdayî bername''yê li aliyê Esad ve hat gotûbêjkirin. Esad, piştî wê civînê axivî û eşkere kir ku heya ku de destê muxalifan de xaka Sûriyeyê de hebe, behsa van biryarane nayê kirin û ne mimkûn e ew dev ji erka xwe berde. Dewletên ji bo çareseriya qeyrana Sûriyeyê li Viyanayê biryara ''girêdayê bernamyekê, qonaxa derbasbûnê''dabûn û Esad li ser vê biryarê ji televîyona Îtalyayê RAİê re axivî. Esad, bal kişand ser geşedanên dawî û wiha axivî: "Gava ku teror kêm bû ew ê vî çaxi bikarin li ser vê bernamê biaxivin. Heya ku terorîst di xaka Sûriyeyê de hebin ji aliyê siyasî çareserî ne mimkû e."

**Fransa şev û roj li ser esmanê Raqqayê ye**

Piştî êrîşa DAIŞ'ê ya li Parîsê, Fransayê êrîşên esmanî yên li ser paytexta DAIŞ'ê ya Sûriyeyê li bajarê Raqqayê zêdekirin. Bi pêşevaniya DYA'yê de êrîşên hevpeymanê dest pê kiribûn û meha borî jî Rusyayê dest bi êrîşên esmanî kiribû. Piştî êrîşa DAIŞ'ê a li Parîsê jî Fransayê dest bi êrîşan kiribû û Rusyayê jî alîkarî dide van êrîşan. Wezîrê Parastinê yê Rusyayê Sergey Şoygu diyar kir ku hêzên Rusyayê yên esmanî jî bi füze û çekên giran Raqqa bobmbebaran kirin. Hat zanîn ku keştên Rusyayê yên di Behraspî bi mûçekan êrîş li Raqqa û Deyrazorê kirine. Her wiha hat zanîn ku Rusyayê petrola DAIŞ'ê jî hedef girtiye û sedan maşineyên wan teqandin e.

**Li dijî DAIŞ'ê hevkariya Moskova û Parîsê**

Her wiha piştî eşkere bû ku balafira Rûsyayê ya li Misrê ji aliyê DAIŞ'ê hatiye xistin, Pûtîn anîbû ziman ku ew ê "tol bê hilanîn" û diyar kir ku amadene bi Firansayê re hevkariyê bikin. Êrîşên Rusyayê yên dijî DAIŞ'ê , êrîşên herî tund yên dijî DAIŞ'ê ne. Piştî êrîşên DAIŞ'ê yên Parîsê Serokkomarê Fransayê Hollande jî diyar kiribû ku keştiya firokeyan Charles de Gaulle yê bi tev li operasyonan bibe. Serokkomarê Fransa Hollande anî bû ziman ku êrîşên Parîsê "sedema şer" e û ferman da xebatkarên keşta Charles de Gaulle da ku amadekariyên xwe bikin ku biçin Rojhilatanavîn, Charles de Gaulle ew ê bigehe nêzîkê Suriyeyê û ew ê Fransa êrîşên esmanî zêdetir bike

**Daxuyaniya Kerry a li ser operasyona hevpar**

Operasyonên Rusya û Suriyeyê yên li dijî muxalifan didomin û aliyek din





DYA'yê daxuyand ku ew ê Tirkiye û DYA'yê jî li Cebrablus'ê dijî DAIŞ'ê bihevparî operasyonan pêk bînin. John Kerry diyar kir ku ew ê sinorê Tirkiye yê Rojava bihevparî biparêzin. Kerry li ser mijarê wiha axivî: "Ewlehiya bakurê Suriyeyê ji sedî 75 temîn kiriye. 98 km sinori jî yê bi Tirkiyeyê re bêparastin. Kerry diyar kir ku li dijî DAIŞ'ê DYA'yê û Rusya jî dê têkiliyên xwe xurt bikin.

**Hêzên Kurd sinorên Hesekê û Şengal'ê gihandin hev**

Operasyonên hêzên kurd yên Rojava jî didomin. Çend roj beriya niha hêzên kurd yên Rojava û hêzên muxalîf ên Suriyeyê bi hev ra ''Hêzên Sûriyeya Demokratîk'' avakiri bûn û operasyonên xwe bi vî navi didomînin. Di heman dema operasyona Şengalê dest pê kir hêzên kurd yên Rojava jî dest bi operasyonên gund û navçeyên Hesekê kirin û di encama operasyonan de bi dehan gund û navçe ji destê DAIŞ'ê de rizgarkirin û sinorên Şengal û Hesekê gihandin hev. Di sedema van operasyonane rêyên DAIŞ'ê yên giring hatin birin.

Fermandara YPJ'ê Suat Xelo di derbarê operasyonan de BasNûçe'yê re axivî. Xelo "Hol û gundê derdora Holê hatin rizgarkirin û em niha li sinorê Şengalê ne. Tenê navçeyeke Hesekê ya piçûk di destê DAIŞ'ê de maye. Gelên vê herêmê, kurd, rreb û gelên din gelekî zilm û zordarî ji destê DAIŞ'ê dîtine. Hatina me ya li vê derê morala gelên vê derê gelê kurd, gelê ereb, gelên din gelekî bilind kir. Her wiha hatina me ya vê derê ji bo me jî tê wateya ji nûve jidayîkbûnê. Ji bo me ev tişteke gelekî giringe, nêzîkbûna gelê vê derê ji bo me gelekî watedare û gelên vê derê bi hatina me, bi rizgarkirina me gelekî keyîfxweşin. Her wiha em jî gelek keyîfxweşin, fikra azadbûnê tiştekî gelekî cûda ye û em gelan azad dikin, ev fikre jî, tahma vê tiştê jî tahmekî bê sinore û mirov nikare çawa bîne zimên".

Operasyonên hêzên kurd yên Rojava jî didomin. Çend roj beriya niha hêzên kurd yên Rojava û hêzên muxalîf ên Suriyeyê bi hev ra ''Hêzên Sûriyeya Demokratîk'' avakiri bûn û operasyonên xwe bi vî navi didomînin.



Xelo li ser alikariya çekên ji aliyê koalîsyonê jî viha axivî, "Hinek çek gihiştin destê me lê bele dîsa jî alikariya herî mezin ji aliyê esmanî de çêdibe û ev alikarî jî didome. Em dizanin ev şer ê demek dirêj bi dome û ev şere ta niha bi vîna me didomiya û ev vîna me jî bê dawi ye. Çek û vîn bigehin hev tu hêz nikarin xwe li hemberê me bigirin. Helbet em ê dawiya çeten tundrew bînin, gelê me bi me bawere, em jî ji xwe bawerin, bawerî û vîn çeka me ya herî giring e"

**"Em nêzîkê Raqqa'yê bûn"**

Xelo bal kişand ser rizgarkirina Şengalê û diyar kir ku gava wext vere ew ê Raqqayê jî kontrol bikin û wiha domand: "Operasyona Raqqayê tenê di însiyatîfa YPG/YPJ'ê da nîne û biryara vê jî dibe ku qada nawnetewî, hêzên hevpeyman û Hêzên Sûriyeya Demokratîk bidin. Ev biryar di biryara hevpar e û eger ihtiyaca wan bi me hebe em ê her qadê de alîkariya wan bikin û em ê tev li operasyona Raqqayê bibin. Dubare ez bibêjim ev biryar girêdayê siyaseta navdewletiye, siyaset ew ê çawa bi meşe, çawa biryar bide,şert û merc çine ew ê li gorî vê bi rêve biçe. Ez dikarim vê bibêjim ku em nêzîkê Raqqayê bûne. Rizgarkirina Şengalê ji aliyê hêzên kurd û rizgarkirina Holê rêyên DAIŞ'ê birîn, qada liv û tewgera DAIŞ'ê teng bû û ev yêk jî kare me rihettir dike, rêyên DAIŞ'ê navbera Mûsuûl û Reqqayê di bin kontrola hêzên kurdî û Hêzên Sûriyeya Demokratîk dene."

Piştî rizgarkirina Şengalê, hêzên kurd yên Rojavayê Kurdistanê li başûrê Hesekê bi ser DAIŞ'ê de girtin û bajarokê Hol û gelek gundên derdorê ji destê DAIŞ'a tundrew rizgar kirin. Rizkarkirina Holê û Şengalê rêyên DAIŞ'ê qut kirin û têkilyên DAIŞ'ê yên navbera Iraq û Sûriyeyê ketin xeteriyê.

**"Ji bo Raqqayê jî mesafe hindik ma"**

Endamê PYD'ê yê Hesekê Hûsên Bire jî operasyonên derdora Hesekê û rizgarkirina Holê ji bo rojnameya me BasNûçe'yê nirxand. Hûsên Bire, ragihand ku serkiftinên Hol û Şengalê di warê leşkeri de mizgîniyên nû ne û her viha deriye serkeftinên nû ji bo kurdan vedikin. Birê bal kişand ser operasyona Reqqayê jî û wiha got: "Operasyonên Hêzên Sûriyeya Demokratîk didomin û encama operasyonan de bi dehan gund û qezaya Holê hat rizgarkirin. Serkeftinên Holê û Şengalê ew ê serkeftinên din hêsantir bike. Operasyona Raqqayê jî biryara vê di desteya Hêzên Suriyeya Demokratîk daye. Niha li başûrê Hesekê de pêşve diçin û her roj zêdetir nêzîkî Raqqayê dibin. Derdora Hesekê bi temamî ji DAIŞ'ê paqij bûye".

**Êrîşên Tirkiyê yên ser Rojava**

Piştî hêzên kurd serkefitinên mezin li derdora Hesekê û Rojava kirin û nêzîkê Raqqa û Cerablus'ê bûn, artêşa tirk êrîşan li mevziyên YPG/YPJ'e yên Girêspî kir. TEV-DEM'ê nerazîbûna xwe nişan da û derbarê êrîşên Tirkiyeyê de daxuyaniyek da. TEV-DEM'ê ani ziman ku Tirkiye qanûnên navdewletî binpê dike û viha domand: "Dewleta Tirkiyeyê ji 24'ê cotmehê şûnde êrîşan li çeperên YPG yên Kobanî û Girêspî dike. Di heman deme de jî Tirkiyeyê dest bi gotinên dijber û gefên dijî xweseriya Rojava kiriye û zêde kirine. Kiryarên Tirkiyeyê kiryarên neyartiyêne û ev yêk tê wateya binpêkirina qanûnên navdewletî. Ev rewş zirarê dide peywendiyên cîrantiyê. Divê dewletên hevpeyamanê zêdetir li ser Tirkiyeyê bandor bikin ku dijî gelê kurd dest ji karên neyartiyê berde.

**"Kurd Firansa'yê fêmdikin"**

Li hêla din li cihê ku komkujiya Parîsê rûdabû rêwrasma şînê bi rêve diçe. Hevserokê PYD'ê Salih Mûslîm jî tev li vê şînê bû. Mûslîm anî zimên ku kurd li dijî DAIŞ'ê bi Fransayê re hevpar şer dikin. Di heft êrîşên DAIŞ'ê de yêk ji van kolana Bataclan Cafe'yê de bû û ev kolan ji trafîkê re hate vekirin. Ji bo ku qurbaniyên di vê kolanê merasîmek birêvebirin û Salih Mûslîm ji bi heyetek mezin ve tev li vê merasîmê bû. Mûslîm di merasîmê de viha axivî: "Em neyarê mirovatiyê, çeteyên DAIŞ'ê ji ber êrîşên Parîsê şermezar dikin. Kurd du sale li dijî wan çeteyane şer dikin û ta ku yêk kesê DAIŞ'ê li ser rûyê dinyayê hebe ji tu kesî rihetî nabe. Gelê Fransayê herî baş kurd fêm dikin û em ê her bi gelê Fransa'yê re bin." Mûslim, bal kişand li ser gotinên Serokkamarê Rusyayê Putin'ê "di hundirê me de dewletên alîkariya DAIŞ'ê dikin hene'' û diyar kir ku civîna G-20'ê ya li Tirkiye'yê de tu biryar li dijî terorîzmê nehatiye girtin. Mûslîm anî zimên ku dijî DAIŞ'ê tenê kurd bi dil û can şer dikin.

**Şervanên YPG'ê hatin berdan**

Li aliyê din 6 şervanên YPG'ê yên ku Tirkiyeyê radestî koma bi nave Ahrar el Şamê kiribûn hatin berdan. Li Kobanê 6 şervanên YPG'ê di berxwedana Kobanê de birîndar bibûn û di meha tebaxa 2015'an de ji bo dermankirinê derbasî Bakûrê Kurdistanê hatibûn kirin. Lê Tirkiyeyê 6 şervanên birîndar radestî koma bi navê Ahrar el Şamê kiribûn.6 şervan piştî 3 mehan li herêma Efrînê serbest hatin berdan. Şervan saet derdora radestî YPG'ê hatin kirin.Beriya niha hatibû gotin ku 6 şervan rasdestî çeteyên El-Nûsra hatine kirin, lê derket holê ku ew radestî Ahrar el Şamê hatine kirin. Her wiha li gor zanyariyên ji herêmê hatine wergirtin danûstendin di navber YPG'ê û komên tûndrew de destpêkiriye û ew ê YPG jî dîlên wan koman radeswtî wan bike. Li hêla din amaje li ser wê yekê jî heye ku ew ê dorpêça li ser bajarê Efrînê jî rabe û li ser vê meseleyê jî danûstendin di navbera YPG'ê û koman de didomin.



## Sait Çürükkaya:

# Serkeftina Şengalê dawîbûna DAIŞ'ê ye



"Operasyona Şengalê ji sê bereyên; başûr, başûrê rojhilat û rojhilatê bajêr destpêkir. Ez di bereya rojhilatê de bûm. Em ji rojhilatê bajêr ber bi bajêr ve çûn. Bi tenê Pêşmerge beşdarî operasyonê bûn. Pêşmerge bi hemû hêza xwe xwe li herêmê bi cih kirin û dema ku biryara operasyonê hat dayîn jî operasyon hat kirin. Hemû kes radibe behsa xwe dike ew operasyon ji aliyê Pêşmergeyan bi rêve çû. Ez bi xwe di hemû amadekariyên operasyonê de bûm. Min hemû tişt didît. Ji bilî Pêşmergeyan tu hêzan li hember DAIŞ'ê şer nekir. Ne Heşdî Şabî ne gerilla û şervanên YPG'ê ne jî endamên Artêşa Iraqê beşdarî operasyonê bûn."

Ji Şengalê ve mirov dikare tesîra xweli ser Sûriyeyê li ser Iraqê bike. Di heman demê dedixwaze li ser Israil jî bike. Îran dixwaze vê derê bike kontonek Şîe û rêveberiya wê jî nêzîkî Îranê be. Qenndîl jî nêzîkê Îranê ye. Li ser vê yêkê dixwazin gengeşî û tevlihevî çê bibin. Li vê herêmê neft heye, Ezdî herî zede li Şengalê ne. Şengal sembola kurda ye.



Mehmet Salih Batırhan

Di demsala havîna 2014'an de DAIŞ'ê bi awayekî hovane êrişî ser xaka Herêma Kurdistanê kir û xwest desthilatdariya kurdan a li Kurdistanê ji holê rabe. Êrîşa DAIŞ'ê ya ser bajarê Şengalê yekem êrîşa DAIŞ'ê bû û di encama êrîşê de bi hezaran sivîlên kurd ji aliyê DAIŞ'ê hatin revandin û bi hezaran sivil jî hatin kuştin. Piştî êrîşên DAIŞ'ê yên ser Herêma Kurdistanê û bi taybetî jî bo rizgarkirina bajarê Şengalê Pêşmergeyên Kurdistanê li hember DAIŞ'ê gelek operasyon pêk anîn. Di encama gelek operasyonên Hêza Antî Teror a bi ser Asayîşa Kurdistanê ve ye gelek keç û jinên ezdî yên di destê DAIŞ'ê de bûn hatin rizgarkirin. Her wiha li dorûbera bajarê Şengalê gelek operasyon hain pêk anîn û beriya destpêkirina operasyona mezin gelek çek teqemenî û yekîneyên Pêşmergeyan ber bi herêmê ve hatin şandin.

Bi hemahengiya koalisyona navdewletî û bi serfermandariya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di 12'ê meha mijdarê de nêzîkî 20 hezar Pêşmerge dorubera Şengalê ji sê aliyan ve dorpêçkirin û bi ser bajêr de meşiyan. Bi destpêkirina operasyonê ve endamên DAIŞ'ê yên xwe li hember Pêşmergeyan negirtin ji nava bajêrt derketin û vekişiyan. Her wiha bajar ket bin kontrola Pêşmergeyan û rizgarbûna bajêr di rojeva cihanê de deng veda. Endam û medya ya PKK'ê, artêşa Iraqê, milîşeyên Şîe, piştî rizgarbûna bajêr serkeftina Pêşmergeyan li ser navê xwe tomar kirin.

Fermendarê Pêşmergeyên Xwebexş ê Agiri Sait Çürükkaya hurgiliyên operasyona Şengalê, nîqaşên li ser rizgarbûna Şengalê ji BasNûçe'yê re şirove kir. Çürükkaya da zanin ku serkeftina Şengalê ji aliyê Pêşmergeyan hatiye tomarkirin û aliyên din jî ser serkeftinê li xwe par dikin. Çürükkaya amaje li ser wê yekê jî kir ku DAIŞ ber bi têkçûnê diheere û serkeftina Şengalê jî proseya vê yekê bû.

**Nîqaşên li ser rizgarbûna Şengalê berdewam dikin. Artêşa Iraqê û milîşeyên Şîê îddîa dikin ku wan jî beşdarî li operasyonê kiriye. Her wiha medya ya PKK'ê jî radigîne ku gerîllayên PKK'ê bajar rizgarkirine. Li hêla din hin agahî tên belavkirin ku leşkerên Kanada'yê jî beşdarî operasyonê bûne. Demeke direj e tu li Şengalê ye û tu beşdarî operasyonê bû tu dikarî çavdêriyên xwe bi me re parve bikî?**

Operasyona Şengalê ji sê bereyan dest pê kir. Ji başûr başûrê rojhilat û rojhilatê bajêr dest pê kir. Ez di bereya rojhilatê de bûm. Em ji rojhilatê bajêr ber bi bajêr ve çûn. Bi tenê Pêşmerge beşdarî operasyonê bûn. Pêşmerge bi hemû hêza xwe xwe li herêmê bi cih kirin û dema ku biryara operasyonê hat dayîn jî operasyon hat kirin. Hemû kes radibe behsa xwe dike ew operasyon ji aliyê Pêşmergeyan bi rêve çû. Ez bi xwe di hemû amadekariyên operasyonê de bûm. Min hemû tişt didît. Ji bilî Pêşmergeyan tu hêzan li hember DAIŞ'ê şer nekir. Ne Heşdî Şabî ne gerilla û şervanên YPG'ê ne jî endamên artêşa Iraqê beşdarî operasyonê bûn. Pêşmergeyên di bin serfermandariya Qasim Şeşo, yên Zerevaniyê, yên Parastinê li wir bûn. Li bereya rojhilat zêdetir ji 7 hezar Pêşmerge hebûn û bi destpêkirina operasyonê jî Pêşmerge derbeyên giran li DAIŞ'ê dan. Di nava çend saetan de nava bajêr kontrolkirin.

Ew dibêjin wextê binketin hebe para van nîne, ew serkeftinan jî li ser xwe dihesibînin. Serkeftinan dikin para xwe. Azadkirin, serkeftinê dixwazin li ser medyayê bi propagandayê para xwe diyar dikin. Bi rastî wiha bû. Roja ewil, êvarî em bibejin, koalisyona navdewletî karekî baş kir di qada navdewletî de. Li hûndirê Şengalê hêzên DAIŞ'ê lavaz kir. Roja duyem, hûndirê Şengalê nîv saetê de hat rizgarkirin. Me hêzek din ne dît, Pêşmerge hebû, hêzeke cûda em bejin tenê hêza Heyder Şeşo hebû tu hêzên din nebûn. Tu hêz û şervanên din beşdarî operasyonê nebûn.



**Olan a operasyona Şengalê piştî rizgarbûna wê jî berdewam kir. Giringiya Şengalê di warê leşkerî de çi ye? Çima Şengal bû rojeva hemû cihanê?**

Şengal sembolek bû. Yanî kerasеta herî mezin a bi ser mirovatiyê hat DAIŞ bû, DAIŞ'ê bi ser Şengalê de girt. Serkeftina li dijî DAIŞ'ê ya li Şengalê mîna sembolekê bû. Ev yek ewqasî giring bû. Ya duyem jî, destpêka xelasbûna DAIŞ'ê serkeftina Şengal'ê ye. Yanî ji îro şûn ve DAIŞ nikare xwe bigire, çi cihê êrîşê erdi em bi bejin destpê bike, ez bawer im DAIŞ nikare xwe li hember bigire.

**Di dema operasyona Şengalê de şervanên kurd ê Rojava jî li bajarokê Holê li hember DAIŞ'ê operasyonek pêkanîn. Gelo hemahengî di navbera we de hebû?**

DAIŞ lawaz bûye, dikarin biçin. Em dikarin wan têk bibin. YPG û şervanên wan li hember DAIŞ'ê gelekî baş şer dikin. Bi koalisyona navdewletî re hemahengi heye. Koalisyona navdewletî gelekî piştevaniya wan dike. Ew jî li hember DAIŞ'ê operasyonên serkeftî pêk tînin. Em ê DAIŞ'ê ji holê rakin. Hemû medya cihanê berê xwe da Şengalê hemû kesî bi awayekî zindî rizgarbûna Şengalê belavkirin. Koalisyona navdewletî û gelek welatan rizgarbûna Şengalê li Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û Pêşmergeyên Kurdistanê pîroz kirin.

**Hêzên PKK'ê yên Şengalê eşkere kirin ku piştî rizgarbûna Şengalê ew ê jî herêmê derkevin. Dema derketina wan a ji Şengalê diyar e?**

Vallahî wan gotiye û soz dane ku piştî rizgarkirina Şengalê yê ji herêmê derkevin. Lêbelê tiştekî wisa xuyaneke. Hêzên wan hîn li vê derê hene. Ez bawer im eger biryara cenabê Mesûd Barzanî heye. Gotiye; 'Gerek şerê navxweyî, şerê birakujî dernekeve. Eger ev biryar tunebe, em dikarin bêjin ew ê tiştên nexweş pêk werin. Gelek hêzên wan niha li Şengalê hene. YBŞ, YPG, HPG, PKK navên wan gelek in. Li nava Şengalê xalên kontrole çêdikin. Dixwazin gengeşî derkevin, ez bawerim ew ê pirsgirekên mezin derkevin. Niyeta wan ne baş e û dibe pirsgirek bi awayekî siyasî bên çareser kirin. Hêvî ew e ku pirsgirêk çareser bibin.

**Şengal çima bû cihê rikberiya siyasî û leşkerî?**

Şengal bû qadeke nav dewletî, yanî Îran vê herêmê weke ciheke stratejîk dibîne. Ji Şengalê ve mirov dikare tesîra xwe li ser Sûriyeyê li ser Iraqê bike. Di heman demê de dixwaze li ser Israil jî bike. Îran dixwaze vê derê bike kontonek Şîe û rêveberiya wê jî nêzîkî Îranê be. Qendîl jî nêzîkê Îranê ye. Li ser vê yêkê dixwazin gengeşî û tevlihevî çê bibin. Li vê herêmê neft heye, ezdî herî zede li Şengalê ne. Şengal sembola kurda ye, hakîmiyeta Şengalê dixwazin bidin Iraqê, Qendîl û Îran bi hevre ne û dixwazin vê derê bixin bin bandora xwe. Li aliyekî din jî DYA'yê jî dixwaze li gorî xwe planên xwe çêbike. Yanî hem gengeşî û nakokî naxweyî hene û hem jî din ava qada navdewletî jî gengeşî û plan li ser herêmê hene. Rikberî ji ber vê yêkê derkevin holê.

**Niha li Şengalê rewş çi ye? Em wisa dizanin ku yekîneya ku tu fermandariya wê dike. Pêşmergeyên xwebexş gelek mayîn û teqemenî ji nava bajêr derxistin û îmhe kirin. Mayîn li ku hatine bi cihkirin ew ê Şengal kengî ji wan teqemeniyan bê paqijkirin?**

Şengal ji sedî heftê wêran bûye, hem ji ber êrîşên DAIŞ û hem jî liber êrîşên esmanî wêran bûye. Divê Şengal ji nûh ve bê avakirin. Dema ez derbasî Şengalê bûm, tîma me ya Rojava li wir bû. Me kesekî çalakvan ê întîxarî girt. Me 5 ton TNT dît, eger ev biteqiya ew ê 300 Pêşmerge şehîd bibûna. Me du TNT din jî dîtin. Yêk 20 ton bû yêk jî 2 ton bû. Tîma me ev dîtin. Bi vê yêkê Pêşmerge gelek zaiyat nedît. Kêm mal mane ku nehatine kontrolkirin.

Yanî em bejin kesên profesyonel tune ne. Yên xwebexş diçin paqijiya teqemeniyê dikin hene, ne aliyek fermî, hewilda û me bi awayekî xwebexş ev kar kir. Ev kar karê piştî şer bû. tîmên navdewletî piştî şer tên tev li van karên paqij kirinê dibin. Divê kesên profesyonel bên ji bo paqijkirinê, Pêşmerge nikare vî karê bike. Ev xebatên me ji bo parastina Pêşmergeyan gelekî giring bû û di cih debû. Karê me vî rojê kirî ji bo encama serkeftinê muhîm bû. Dîrokî bû.

**Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî beşdarî operasyonê bû û operasyon ji aliyê wî ve dihat birêvebirin. Tu yê jî bo operasyona di bin serfermandariya Barzanî de birêve çû, çi bêjî?**

Birêz Barzanî bi xwe serfermandariya operasyonê kir. Vê yêkê roleke mezin li ser serkeftina Şengalê kir. Serok Barzanî bi rastî jî di şer de bû. Deqqe bi deqqe, saniye bi saniye operasyonê şopand. Hebûna wî ya qada şer moralê Pêşmerge gelekî bilind kir. Cenabê Barzanî hem serokekî siyasî ye û hem jî fermandarekî leşkerî ye. Rizgarbûna Şengalê ev yek dîsa îspat kir. Serkeftina Şengalê û rola Serok Barzanî ew ê ji bo siberoja kurdan gelek tiştan biguherîne. Kak Mesûd Barzanî soz dabû xelkê me yê ezdî da ku ew bêne rizgarkirin ji bo rizgarbûna Şengalê gelek pêngav birêveçûn. Di encamê jî de bajar hat rizgarkirin. Em hêvî dikin ku Şengalê bi cih bibin. Ji bo vê yekê hemû kar ew ê were kirin. Ew ê Şengal jinûhve bê avakirin.

**Ez dixwazim bêm ser Yekîneyên Xwebexş ê Agirî. Çend kes di yekîneyê de cih digrin û li kîjan sengerê şer dikin?**

Hêza me Hêza Agirî ye. Ev hêz hêzeke xwebexş e. Ji roja ku DAIŞ derketiye holê ta niha bê pare û bê alîkarî şerê herî mezin meşandiye, ev hêz jî hêzeke Pêşmerge ye. Hêzên Roj, hêzên Zerevanî hemû di şerde bûn. Eger piştgiriya Hêza Agirî bê kirin ez bawer im ewê serkeftinên mezin bikin. Hêza Agirî ji 150 Pêşmergeyan pêk tê. Li dijî DAIŞ'ê şer dike. Ji aliyê moral ve rewşa wan baş e. Di aliyê manewiyatê jî gelek baş in. Piştgiriya çek bê kirin ew ê serkeftinin mezin bidest bixin.



**Di operayona Şengalê de Pêşmergeyan dîmenên artêşên profesyonel nîşan dida. Egera wê yekê heye ku serkeftina Şengalê rê li ber artêşeke netewî veke û artêşeke profesyonel ava bibe?**

Min got ev şerê li dijî DAIŞ'ê ji bo Pêşmerge şerê dawî nîne û divê Pêşmerge xwe bike artêşek modern. Divê Serok Barzanî û aliyên din ên siyasî artêşek Pêşmerge ya netewî û dûrî aliyên siyasî avabikin. Şengalê îspat kir ku kurd dikarin artêşek hevpar ava bikin û baweriya min bi vê yekê heye.

Ez hemû kesên tev li operasyonê bûne silav dikim. Demek nêz de hêvîdarim kurd serkeftinên mezintir bikin, Pêşmerge amade ye ji bo her serkeftinê. Pêşmerge canê xwe dide ji bo Kurdistanê. Ez di wê baweriyê de me ku ew ê ew komên tûndrew ji Kurdistanê bêne derxistin.

**Li Xûrmatûyê jî milîşeyên Heşdî Şabî êrîşî kurdên sivîl dikin. Egera wê yekê heye ku piştî şerê DAIŞ'ê bi milîşeyên Şîe re şerekî destpêbike?**

Bêguman ew ê destpêbike. Eger şerê DAIŞ'ê biqede ew ê bi Heşdî Şebî re şer derkeve. Ereb û Şîe hez nakin ku kurd bi ser bikevin. Îro şerê DAIŞ'ê biqede ew ê sibê şerê Heşdî şebî destpêbike. Divê kurd hişyar bin, şerek din çênebe. Divê kurd ji wî şerî jî re xwe amade bikin. Naxwazin kurd bibin xwedî otorîte û desthilatdar. Pêşmergeyên kurd amade ne ji bo parastina Kurdistanê. Ji xwe ji navê Pêşmerge diyar e. Pêşmerge yanî beriya mirinê tê. Pêşiya mirinê tê. Tirs bi Pêşmergeyan re tuneye ew ê Kurdistanê biparêzin. Rizgarbûna Şengalê jî bû qonaxeke gelekî giring.




Di qonaxa  pêvajoya careseriyê de girtiyên nexweş jî hatibin rojevê jî, ji ber pêvajo asê bû û pevçûn destpêkirin, girtiyên nexweş jî hatin jibîrkirin. Li Tirkiye'yê bi giştî 740 girtiyên nexweş hene û ji van 298 girtî bi nexweşiyên giran re rû bi rû ne.

# Girtiyên nexweş hatin jibîrkirin

Reyhan Akgün

Li girtîgehên Tirkiyê' yê 740 girtiyên nexweş di mercên dijwar de hewldidin ku diyana xwe bidomînin. Her çiqas di qonaxa  pêvajoya çareseriyê de girtiyên nexweş jî hatibin rojevê jî, ji ber pêvajo asê bû û pevçûn destpêkirin, girtiyên nexweş jî hatin jibîrkirin. Li gor şertên peymanên navneteweyî û DMME'yê  divê dewlet bi baldarî li ser tenduristiya girtiyan raweste û derfetên parastina tendurustiya girtiyan pêkan bike. Dezgehên sivîl ên Amedê diyar dikin ku di derbarê girtiyên nexweş de Dadgeha Desturê biryarên polîtîk dide. Dezgeha Lêkolîna Bijîşki jî di çarçoveya bîrdoziya dewletê de tevdigere û ji ber vê yekê nexweşên êşên wan granin serbest nayên berdan û ev girtî roj bi roj ber bi mirinê ve diçin.

**298 girtî li ber mirinê ne**

Li gorî rapora Agahdariyên Rewşa Tenduristiyên Girtî yên Girtîgehên Tirkiyeyê ya Komeleya Mafên Mirovan (İHD) ya 14 Mijdarê li Tirkiye'yê bi giştî 740 girtiyên nexweş hene û ji van 298 girtî bi nexweşiyên giran re rû bi rû ne. Endamê Komîsyona Girtîgehan yê Şaxa Amedê ya İHD'ê Muhterem Süren destnîşan kir ku şert û mercên girtîgehan û polîtîkayên dewletê yên giştî, tenduristiya girtiyan dixe xetereyê û kesên ku tenduristin jî dema ku dikevin girtîgehan nexweş dikevin. Süren got: "Kesên ku nexweş bin û bikevin girtîgehê nexweşiyên wan zêdetir dibin û pêdiviyên dermankirinê nayêne bi cih anîn, di nexweşxaneyan de  bi gellek pirsgirêkan re rû bi rû dimînin û hin bijîşk û karkerên nexweşxaneyan bi helwestên polîtîk nêzikî wan dibin. Jûrên ku girtî lê têne dermankirin ne tendurust in, ji ber van sedeman mafê tedawiya girtiyan bi rêk û pêk nayê dabînkirin nexweşên giran bi mirinê re rû bi rû ne."

**"Dezgeha Lêkolîna Bijîşkî bi bîrdozî tevdigere"**

Muhterem Süren diyar kir ku nezîkahiya hikumet û dewletê li dij girtîyan tu carî ne guheriye û hêjî nexweşên girtî di girtîgehan de jiyana xwe ji dest didin. Süren got ku di pêvajoya çareseriyê de ev pirsgirêk ji aliyê hemû kesan ve bi taybetî jî ji aliyê hikûmetê ve hatibû bilêvkirin û hiqumetê sozên dermankirina wan bi cih nehaniye û dom kir: "Dewlet vê rewşê wek manî bikar tîne û ev li dijî mafên mirovan e. Divê girtiyên nexweş bi rêk û pêk bêne dermankirin û yên ku li ber mirinê ne jî demildest bêne berdan. Me gelek caran bang kir û her carê prosedurên brokratîk danîn pêş me. Hikûmet van astengiyên brokratîk derdixe pêş me. Hikûmet niha dikare bi serê xwe destûrê biguherîne, lê belê nake."






Süren destnîşan kir ku nêzîkahiya Dezgeha Lêkolînê ya Bijîşkî polîtîk e, raporên ku ji bo girtiyên nexweş têne amadekirin  sosret nirxand û diyar kir ku di raportên nexweşxaneyên dewletê de hin kes ji sedî 97 astengdarin, lê belê Dezgeha Lêkolînê ya Bijîşkî dibêje; 'Ev kes dikare di girtîgehê de bimîne.' Süren got: "Ev dezgeh, van raportan amade dike, lê belê di derbarê rewşa girtîgehan de tu raportên wê tune ne. Ev raportên Dezgeha Lêkolînê ya Bijîşkî jî îdeolojîk in. Dibê ev erk ji dest wê bê derxistin û mafê biryargirtinê ji dest wê bê derxistin. Dema ku nexweşxaneyeke bi rêk û pêk, di derbarê girtiyan de raportek bide, divê ev bê qebûlkirin."

Süren anî ziman ku amadekirina raportan jî pirsgirêkek mezine û hin raport di 6- 7 mehan de têne amadekirin. Nexweşên li ber mirinê ne jî ji ber van proseduran an di girtîgehande jiyana xwe ji dest didin, an jî piştî çend mehên serbest berdanê jiyana xwe ji dest didin. Divê ev prosedur bêne betalkirin. Ev pêkanînên ku li dij girtiyên nexweş têne kirin li dijî şert û pîvanên DMME'yê ne."

**"Dadgeha Desturê biryarên polîtîk dide"**

Muhterem Süren destnîşan kir ku biryarên Dadgeha Desturê jî ji yên Dezgeha Lêkolîna Bijîşkî cudatir nînin û ew jî biryarên politik dide. Suren ragihand ku kesên çend nexweşiyên wan hene û serî li Dadgeha Desturê didin, lê belê serlêdanên wan têne redkirin û got: "Lê dema ku girtiyên Ergenekonê serî lê didin, biryarên serbestberdana wan bi lezgînî têne dayîn." Süren anî ziman ku ji bo pêvajoya hiquqî ya girtiyan ew serî li dadgehan didin, dema ku raport têne amadekirin, ew van raportan dişopînin û îtirazên xwe dikin. Suren amaje kir dema ku rêyen navxweyî biqedin ew serî li AHÎM'ê didin û got: "Ev serî lêdan û îtirazên me têr nake ku em jiyana wan nexweşan xilas bikin. Ev pêvajo gelek dirêje û em nikarin mafê jiyana wan biparêzin." Suren got ku ji bo rewşa girtiyên nexweş bi rayedarên hikumetê re hevdîtinên xwe pêkdianîn û got ku ewê bi hikumet a nû avabibe re jî peşniyarên xwe bikin.

**"Raportên derketinê hene lê nayên berdan"**

Hevserokê Federasyona Komeleya Piştgiriya Huqûqî ya Malbatên Girtiyan (Tuhad-Fed) Mehmet Temizyüz jî ragihand ku di girtîgehên Tirkiyeyê de nêzîkî 5 hezar û 800 girtiyên ji doza PKK'ê  hene û got: "Ji van girtiyan 1200 kes, 20 sal zêdetir e ku di girtîgehê de ne. Ev girtî di bin îşkenceyên giran de derbasbûne û niha bi gelek nexweşiyan re rû bi rû ne. Divê ev girtî demildest serbest bêne berdan." Temizyüz da zanîn ku ji van girtiyan 101 kes rapora wanê ku êdî nikarin di girtîgehande bijîn heye û wiha dom kir: "Ji van 101 girtiyan 20 kes bi êşên pir giran re rû bi rû ne. Di nava du salên dawî de 11 ji van girtiyan, ji ber nexweşiyên xwe hatine berdan, lê belê ji wan kesên ku hatine berdan jî 5 kes herî zêde du meh li derve jiyane û 5 kes jî dîsa hatine girtin û kesek jî niha tedawî dibe. Divê ev girtî di demeke nêz de serbest bêne berdan." Temizyüz anî ziman ku ji bo pirsgireka girtiyên nexweş bê çareserkirin, pêdivî bi avakirina lijneyeke serbixwe heye. Temizyüz jî pirsgirêkên girtiyên nexweş anî ziman û anî ziman ku Dezgeha Lêkolîna Bijîşkî û nexweşxane di derbarê girtiyên nexweş de erka xwe bi cih nayînin.

**Piştî 23 salan ji ber nexweşiyê bi şert hate berdan**

İsmet Çardak'ê ku gerîllayê PKK'ê bû di sala 1992'an de bi birîndarî ji aliyê hêzen dewletê ve hatibû girtin û cezayê muebetê lê hatibû birîn, piştî 23 salan ji ber nexweşiya miyopada genetîkê bi biryara Dozgeriya Bakirkoyê ya Stenbolê bi şertê salekî, di 6 Gulanê de serbest hate berdan, da zanîn ku ew di sala 1999'an de bi nexweşiya xwe hisiyaye û ji wê rojê pêve dest bi tedaviyê kiriye û got, "Piştî ku ez bi nexweşiya xwe hisiyam di şert û mercên girtîgehê de min hewl da ku tedawî bibim. Lê belê min nizanibû ku nexweşiya min çiye. Piştre Nexweşxaneya Zaningeha Dicleyê destnîşan kir ku ez tûşî miyopada genetîkî bûme." İsmet Çardak ani ziman ku ew nikare bi serê xwe pêdiviyên xwe yên rojane pêk bîne û biryara ku Dezgeha Lêkolîna Bijîşkî daye jî li dijî mirovahiyê ye. Çardak got ku rewşên girtîgehan ne tenê ji bo nexweşan ji bo mirovên bi tendurist jî nebaş in.





Weqfa Barzanî:

# Ji bo Kobaniyê projeyên stratejîk




Di wextê şerê de me alîkariya xelkê Kobanî kir. Piştê rizgarkirina Kobaniyê jî me alîkariyên xwe domand. Di despêka şerê Kobanîyê de Weqfa Barzanî 126 hezar ton alîkarî derbasî Kobanî kir. 100 ton alîkariya me gihîşt koçberên Kobanîye yên ku li Rihayê bicîh bibûn.

Ercan Ekinci

Weqfa Xêrxwazî ya Barzanî (WXB) ji ber pêdiviya alîkariya xizan û belengazên mexdûrên şer ên Kurdistanê hat damezirandin. WXB bi giştî li gelek deverên cîhanê cihên ku destê wê digihîje, bûye bayê mirovperwerî û alîkariyê. Ev weqfa ku bi armanca alikariya mirovî bigihîne mexdûrên şer, erdhej û karesatan, di sala 2005'an de li Hewlerê hat damezrandin. Weqif heta niha bi belavkirina xwarin, cil û berg, betanî, kon, şîr û potên bebikan û çêkirkirina xaniyên prefabrîk û gellek karên din ên xizmetguzariya mexdûran balê kêşaye. Ji ber weqfeke Kurdistanî yê taybet li deverên welat karên alikarî ya mirovî dimeşîne. Weqif di xebatên xwe de ti cudahiyekê naxe navbera netewan û li hewara hemû pêkhateyan diçe.

Weqfa Xêrxwazî ya Barzanî ku di du salên dawîn de, di destpêkirina şerê navxeyî yê li Sûriye rû da û peşka xwe li Rojava û Başûrê Kurdistanê û her wiha li İraqê xist û bû sedemê koçkirin û penaberiya bi milyonan mirovan, navê wê hat bihîstin. WXB, di bin mercên dijwar de alîkariya mirovî digihîne mexdûrên şer. WXB ku demeke dirêj e, alîkariya niştecihên Kobanî dike, hefta borî jî, çendîn komyon arvan birin bo xelkê bajêr.

Rêvebirên Weqfê Awat Mustefa û Îsmaîl Abdulazîz ku bi mebesta alîkariya Kobanî hatibûn Bakûr derbarê xebat û alîkariyên xwe de pirsên BasNûçe'yê bersivandin.

**Weqfa Xêrxwazî ya Barzanî çi demê û ji bo çi armancî hat damezrandin?**

Awat Mustafa: Weqfa me di sala 2005'an de hat avakirin. Biryara Serokê Herêmê birêz Mesûd Barzanî hebû di vê derbarê de. Ev weqf hat avakirin ji bo hizmeta xizan û mexdûrên Kurdistanê bike.

**Weqfa we bes li Kurdistan'ê xebatên xwe didome an jî projeyeke navnetewî ye?**

Îsmaîl Abdulazîz: Her cihek, her miletek pêwîstî bi alîkariyê hebe em diçin gel wan û alîkariya ji dest me tê, em dikin. Dema ku pêwîstiya xelkê Basra û Amara yê ereb bi alîkariyê çêbû, em çûn gel wan û me desten alîkariyê dirêjê wan kirin. Herwiha li gellek cihên dervayê Kurdistanê me alîkarî kiriye. Netewe bo me girîng nîn e, her cihek û her kesek pêwîstî bi alîkariya me hebe em gihêştinê wan û me alîkarî birine wê derê.

Weqfa Barzanî ne rêxistineke lokalî ye. Weqfekî derbarê xêrxwaziyê de gellek berfireh kar dike ye. Li herema me, li Başûr gellek pirsgirêk hene. Tenê li Herema Kurdistanê mîlyonek û nîv penaber hene. Ji Başurê İraqê 300 hezar penaber hene. Ji bo me lazim nîn e em biçin welatê xerîb alîkariya miletekî din bikin. Eger rojekî li Kurdistane şer nema û Kurdistan ava bû, wê demê îmkanên me wê hebin ku em alikariya miletên cihên dûr jî bikin.

**Weqfa we çima navê Barzanî vergirtiye?**

Awat Mustafa: Navê weqfa me ji navê Mele Mistefa Barzanî hatiye. Em dixwazin fikr û xebatên xwe bi rêya navê Mele Mistefa Barzanî pêk bînin û bimeşînin. Em dixwazin xebat û şoreşên wî bi cih bên. Xebatên wî, fikrên netewî bûn. Xebatên xwe yeknesan di nav miletê de dikir. Mele Mistefa Barzanî li ermenî, li mesihî, li ereb, li ezdî, li kurmanc û li soran bi yek çav temaşe dikir. Li cem wî dad û wekhevî hebû. Rengên însanan bo me girîng nîn e; eger zer be, eger sor be û kesk be an jî kurd be, ermenî be, cihû be, misilman be an jî mesîhî be, eger ku pêdiviya wan bi me hebe, em bo alîkariyê amade ne. Em dixwazin fikir, îdeolojî û rêbaza wî bi edaleta Serok Mesûd Barzanî bişixulin. Rêbaza Barzanî, ne rêbazeke çekdarî bû ne jî xebatekî tenê bo miletê xwe bû. Rêbaz û xebatên Barzanî bo temamê heremê, bi taybet bo hemû İraqê bû. Barzanî kesayetîyekî gellek gewre ye. Ev rêbaza wî ji bo me gellek muhîm e.

**Alîkariya weqfa we ji Bakûr re jî çêdibe?**

Di sala 2011'an di erdheja Wanê de me gelek alîkarî kirin. Ji tamîrkirina Zanîngeha Wanê bigire heta pêdiviyên bilez, me alîkariya gelê Wanê kirin. Bi vê sedemê him hikûmeta Tirkiyeyê him jî hemû dinyayê spasiya me kir. Di wan rojên dawî de ku bûyerên li Cizîre çêbibûn me hewl da ku em alîkariya gelên me yên Cizîrê bikin. Lê belê him dewletê, him jî rêxistinên herêmê destûr nedane me.



**Hûn ji Kobaniyê tên. Barê we çi bû û gelo, we çi bir Kobanî?**

Heta îro me deh car alîkarî biriye Kobaniyê. Em di 2014'an di destpêka şerê de daxîlê Kobaniyê bûn. Di wextê şerê de me alîkariya xelkê Kobanî kir. Piştê rizgarkirina Kobaniyê jî me alîkariyên xwe domand. Di despêka şerê Kobanîyê de Weqfa Barzanî 126 hezar ton alîkarî derbasî Kobanî kir. 100 ton alîkariya me gihîşt koçberên Kobanîye yên ku li Rihayê bicîh bibûn. Di wê wextê de me alîkariya 6 hezar malbatan ku ji Kobanîyê derbasê Sûrûcê bibûn kir. Dema Girê Spî azad bû, me 200 hezar litre mazot û 56 ton erzaq me gihandê. Me gellek alîkariya dezgehê firinên Kobaniyê kir. Me 120 ton genim ji wan re bir. Di destpêkê şoreş a Sûriyê de jî me gellek caran alîkariya Rojava kir. Me 30 ton xwarin şandin Qamişlo, Dêrikê û mintiqa kurdan. Projeyê me bo avakirina Kobaniyê jî heye, em dixwazin projeyeke stratejîk çêbikin û dibistan û nexweşxaneyan avabikin.

**Alîkariyên we li Kobaniyê digîje çend kesan?**

Li navenda Kobanî û li gundên derdorê zêdetirî sed hezar însan dijîn. Em dixwazin bi destê hemû gelên me yên Kobaniyê bigrin. Em alîkariya hikûmeta Kobanî jî dikin. Sistema wan çawa ye ew ne karê me ye.

**Di mijara gihandina alîkariyê de astengî çêdibin?**

Em sîyasetê nakin. Pêywendiyên me bi sîyasetê re nîn e. Armanca me ev e: Reng hebin; rengekê kesk, rengekê sor û rengekê zer hebe. Qaanatê me, fikrên Barzanî rengekê dewletî ye. Bila gelek rêxistinên cuda yên sîyasî hebin. Bo me miletê me yek e. Alîgirên PDK, PYD û ENKS hemû bo me yek e. Li cem me hemû kurd in. Ji bo me her kurdek pîroz e.

**Ji bo avakirina Kobanî alikarî û projeyê we çi ne?**

Piştî azadbûna Kobaniyê Serok Barzanî bernameyek belavkir. Li bername ya xwe de bang li hemû miletê kurd û cîhanê kir. Em wek Weqfa Barzanî 500 hezar dolar amede kir ji bo dûristkirina projeyên stratejîk. Alîkariyên me didomin; xwarin û genim dibin, mazot û tiştên zarûrî yên însanî dibin. Rewşa Kobaniyê gellek xirab e. Di navbera Tirkiye û Kobanî têkiliyekî resmî nîn e. Ji ber vê qasê çêkirina projeyên lojîstîk pirr zahmet e. Rewşa xelkê Kobanî gellek xirab e û gellek mexdûr in. Biryara avakirina bajarekî nû di destê xelkê bajêr de ye. Em dixwazin di vê derbarê de Netewên Yekgirtî ji bo avakirina Kobaniyê gavekî giring biavêje û bajêr ava bike.



# Li Rojava pirsgirêka perwerdeyê

Demeke dirêj e perwerdeya dibistanên Rojava ku li ser xwendekaran tê ferzkirin dibe cihê nîqaşan û li ser wê gelekî gengeşî derdikevin. Endamên ENKS'ê jî li hember perwerdeya PYD'ê derdikevin û perwerdeyeke îdeolojîk ku li ser zarokan tê ferzkirin, reddikin.

Macit Aslan

Li Rojavayê Kurdistanê pergala perwedeya dibistanan ku ji aliyê PDY'ê ve tê diyarkirin, bûye cihê nerazîbûnê û beşek ji civakê li dijî vê perwerdeyê derdikevin. Alîgirên ENKS'ê, PYD'yê bi rêvebirina perwerde ya îdeolojîk tawanbar dikin, û dibêjin ev cûre perwerde mêjiyê zarokan tevlîhev dike.

Herî dawî li Çilaxayê ji aliyê xelkê li hember perwerdeya îdeolojîk a PYD'ê xwepêşandanek bi rêveçû û endamên asayîşa PYD'ê rê li ber xwepêşandanan girtin û destûr neda ku daxuyaniya çapemeniyê bidin û êrîşî xwepêşanderan kirın û gelek xwepêşander destgîr kirin. Demeke dirêj e perwerdeya ku PYD li ser xelkê ferz dike dib cihê nîqaşan û li ser wê gelekî gengeşî derdikevin. Endamên ENKS'ê, perwerdeya PYD'ê kul i dibistanan li ser zarokan tê ferzkirin, bi îdeolojîkbûnê tawanbar dikin. Di dersan de bîr û boçûnên serokê PKK'ê Abdullah Öcalan bi zarokan tê fêrkirin.

Rayedarên Rojava û rêvebirên ENKS'ê li ser rewşa dawî ya li Rojava û li ser peywendiyên ENKS'ê û TEV-DEM'ê rawestiyan û ji BasNûçe'yê re axivîn.

**"ENKS ne li dijî kurdî ye"**

Li aliye din fişar û serkutiyên asayişa PYD'yê ya li ser ENKS'ê berdewam dike. Ji destpêka qeyrana Sûriye'yê heta niha PYD'ê bi sedan endamên partiyên encûmana ENKS'ê destgîr kir û gelek ji wan jî ji Rojava derxistin. Li gel sirgûnkirin û binçavkirinê avahiyên partiyên siyasî jî gelek caran ji aliye PYD'ê ve tên girtin û gulebaran kirin. Herwiha leşkeriya neçar jî ji aliyê gelek malbatan tê protestokirin. Herî dawîn li Kobanê bavekî ku 2 kurên wî din av refên YPG'ê de ye dema keça wî jî di bin yasaya leşkeriya neçar de hat desteserkirin, ji bo protestoya YPG'ê xwe şewitandibû û jiyana xwe ji dest dabû.

Endamê Desteya Rêvebir ê Partiya Demokratîk a Sûriye'yê (PDK-S) Muhamed Îsmail li ser nerazîbûnên dijî perwerderdeyê û çalakiyên li herama Cizîrê axivî. Muhamed Îsmaîl amaje kir ku çalaki ji bo rastkirina kiryarên xirab yên tene yêk hizbî, yêk partîtiyî ne. Îsmaîl, rexne li yêk hizbiyê girtin û diyar kir ku PYD tene gotinin xwe, tene gorî berjevendiyên hizba xwe kiryarên xwe dike û berjevendiyên kurdan nafikre. Îsmail, li ser nerazîbûnên xelkê Rojava jî rawestiya û wiha axivî: "PYD an jî TEV-DEM tu eleqeya wan bi kurdan re nîn e, berjewendiyên kurdan serkeftinên kurdan bi wan re nîn e. Têkiliyên wan bi rejîmê ve hene. Wan dest daniye ser çekên rejîmê û van çekan bikartînin. PYD'ê bi saya rejîmê, bi alikariya rejîmê heta vê rojê xwe li Rojava girtiye."

Îsmail amaje kir ku ew dijî dijî leşkeriya neçar in, dijî yek rengî, yek partîbûnê ne. Li gor wî PYD li ser gelê Rojava zilmê dike, gêncan bi zorê dibe çeperên şer. Li gor Îsmail ji ber zordariya PYD'ê xelkê Rojava bajarên xwe vala kirine û YPG'ê dest daniye ser bajarên wala. Her wiha li ser vegerîna gele Kobanê jî Muhamed Îsmaîl axivî o diyar kir ku dê demek nêzde kesê ku vegeriyan ew ê dîsa ji ber kiryarên YPG'ê birevin. Îsmaîl, wiha domand: "Kirinên PYD'ê û YPG'ê kirinên kevneperest in, wek ên rejîmê ne. Hevalên me digrin, bindest dikin, binçav dikin, çalakiyên me qedexe dikin. Dev ji dizan sextekaran berdane û me binçav dikin."

**"Derdê PYD'ê ne kurdî ye"**

Îsmaîl derbarê gengeşiyên ser perwerdeyê de diyar kir ku ENKS ne dijî perwerdeya zimanê kurdi ye, dijî kiryarên PYD'ê ye, PYD tenê gorî xwe perwerdê dide, zarokan, ew di bin xeterên mezin de dihêle, perwerde bi temamî îdeolojîk e û got ew vê yêkê qebûl nakin.

Îsmail, anî ziman ku dê rejîmê jî perwerdeya zimanê kurdî qebul bikira û tu ferka wê û PYD'ê nedima: "Hemû mamosteyên bi tecrûbe ji kar dûrî xistin. Mûçeye mamosteyan tüne ye. Ev felsefe ya hizba xwe li ser me ferz dikin. Ev ji bo zarokan xeterên giring derdixin holê, ji bo mamosteyan jî ev yek gelek zehmet e." Li ser zimanê perwerdê jî Îsmaîl amaje kir ku ENKS dijî perwerdeya zimanê kurdî nîne û ji bo zimanê kurdî jî gelek bedêl dane: "Derdê PYD'ê ne kurdî ye, hema dikarim bibêjim tu eleqaya wan bi kurdan re jî nîn e. Heta yêk peyva kurdî jî di navê partî û hizbên wan de tûneye. PYD tenê astengiyan derdixîne ji bo kurdan, ji bilî vê hîç tiştek jî bo kurdan nake.'

**TEV-DEM: ENKS, şoreşê dide sekinandin**

Endamê TEV-DEM'ê Dozdar Hemo jî rexne li ser ENKS'ê û çalakiyên ENKS'ê kirin. Hemo anî ziman ku ENKS'ê 'destpêka şoreşê ta niha bi karên xwe yên pêşketî derneketin pêş, her tim çavekî neyartî nêzêki pêşketinin kurdan bûne û her tim tengasî ji bo kurdan derxistine.' Hemo diyar kir ku ENKS baweriya xwe bi derveyê Rojava dibîne û siyeseta xwe gorî daxwaz û berjewendiyên derve dimeşîne. Hemo, ji ber vê yêkê dibêje "ENKS ne bûye hêviya kurdan û ENKS'yî ji bo pirsgirkên kurdan çareseriyê nagerin." Hemo îdîa kir ku gava pêşketinek kurdan çêdibe, gava ku aliyê diplomasi de pêşketinek çêdibe, gava ku operasyonên nû organize bikin, ENKS serî li van çalakiyane dide û armanca wan ew e ku kurd bisernekevin: "ENKS di bin bandora derve de ye, yên derve çi dibêjin ew vê dikin. Belkî ew kesên derve ne kurd bin jî. ENKS şoreşê asteng dike, maşîna şoreşê firên dike, dide sekinandin. ENKS wek şîrketekê difikire, mina şîrketan xwe dide damezirandin."

Hemo diyar kir ku di çalakiyên dawîn de jî çi pêşiniyarên ENKS'ê tüne bû, tenê rexne girtin, lê tu çareserî peşkeş nekirin. Hemo her wiha diyar kir ku ew wek TEV-DEM amade ne ku her kesekê re, her hizbekî kurd re hevdîtinan bikin, lê ENKS vê jî qebûl nake.

Li ser leşkeriya neçarî jî Hemo diyar kir ku kurd carek din şansekî wiha nabînin û dibe kurd bilezgînî kare xwe bikin, eger vî şansî jî wenda bikin çareek din bisernakevin û divê hemû bi hevre şerê hovan bikin ku serbikevin. Dîsa dubare tawanbariya ENKS'ê û siyaseta wê jî wiha dike: "ENKS bi tenê li du pereyan digere, dibejê 'em mamosteyên erebî dixwazin, ew xwedî ezmûn in.' Belê ew mamosteyên rejîmê xwedî ezmûn in lê di heman deme de mejûyê rejîmê jî li cem wan heye, em ê çawa zarokên xwe teslîmî wan bikin."

**"Perwerde ya me zanistî ye"**

Wezîrê Karên Derve yê Kobanê Îbrahîm Kurdo ji BasNûçe'yê re amaje kir ku çalakiyên ENKS'ê yên Kantona Cizîrê hemberê perwerdeya zimanê kurdî ye. Kurdo rexne li ENKS'ê girt û bal kişand ser qedexeya zimanê kurdî yê ku bi salane ye didome û wiha got: "Zimanê kurdi sed salî zêdetire qedexe bû, me ne dikarî bi zimanê xwe biaxifin û perwede bibînin. Îro em dibêjin 'bila zarokên me bi zimanê xwe perwerde bibin.' Lê îro ENKS jî dijî zimanê kurdî wek rejîmê difikire, dixwaze vê qedexêyê bidomînin."

Îbrahîm Kurdo, li ser îdeolojîbûna pergala perwerdeyê jî got, perwerde ya wan ne îdeolojîk e û îddîa kir kıu pirtûkên dibistanan jî ji aliyê mirovên serbixwe û pispor hatine amadekirin. Kurdo, "Perwedeya me ne îdeoljîk e, çi tişt veşartî nîne. Ev pirtûk li hemû cîhanê wek hev in, li gorî zaroka ne. Pirtûkên perwerde yê li aliyê mirovên pispor, mirovên serbixwe hatine amade kirin."

Kurdo got ku pirtûkên perwerdê ji aliyê derûnînas, pedagok û civaknasan ve hatîne amade kirin û ew kesên pirtûk amade kirin jî ne alîgirên partî û hizba nin. Kurdo îddîayên xwe wiha domand: 'Yên ev pirtûk amade kirin, derûnînas, pedagok, civaknas bûn, ne aligirên partiyan bûn. Welatiyên kurd, welatiyên ewropî ev pirtûk amade kirin." Kurdo bang li mirovên serbixwe jî kir ku bên pirtûkên perwerdeyê bibinin û li ser van pirtûkan lêkolîn bikin ku rastî bê zanîn. Kurdo wiha domand: "Eger mirovên serbixwe pirtûkên me îdeolojîk bibînin wê ew jî pirtûkên dersan ji nûh ve amadebikin û biguherînin. Kurdo diyar kir ku perwerdê de tene yek îdeolojî heye û ew xwedî derketina zimanê kurdî ye. Kurdo anî ziman ku mafê her kesekêye ku bi zimanê dayîkê deng bike. Beşekî kurdan berê dijî qedexeya ziman gelek çalak bûn, gelek jî şehid dan ji bo ziman. Îro jî dîsa beşek kurdan li ser lingan in ku zimanê kurdî nebe zimanê perwerdeyê. Bila neyê jibîrkirin, gele kurd demeke dirêj e ji bo ziman ditêkoş e ê ji îro pê ve jî wê bitikoşe."





Tekoşîn Mêrdînî



Ezdiyên Amedê:

# Em careke din nabin cîranê ereban

Di 13'ê Mijdarê de piştî ku bi operasyoneke mezin bajarê Şengal'ê û gundên derdora wê hatin rizgarkirin, çavên her kesî vegeriya ser ezdiyan. Her çiqas rizgarkirina Şingal'ê li her deverên Kurdistanê û li gelek welatan hatibe pîrozkirin jî, ezdiyan bi dilekî giran vê serxwebûnê pêşwazî kirin; Lewre di nav ezdiyan de gellekên ku piştî wê tofana ku ew wek 'fermana 74'an' bi nav dikin dîtin û naxwazin careke din vegerin Şengalê jî hene û hejmara wan pir e. Bi vê mebestê me xwest em helwesta eziyên ku piştî fermanê koçî Bakur kiribûn hîn bibin me serdana çadirgeha ezdiyan a Amedê kir. Lê li vê wargehe jî hejmara ku naxwazin vegerin Şengalê zêde bû. Li vê wargehê, heta niha ji hezarî zêdetir ezdî, ji bo derbasî Ewropayê bibin, ji wargehê veqetiyane û yên mayî jî bi hêviya derbasî welatekî Ewropa bibin jiyana xwe li wargehê domînin. Piraniya wan naxwazin careke din vegerin Şengalê û trajediya ku jiyane dûbare bibe. Lewre dibêjin, "Ji DAIŞ'ê bêtir erebên cîranên me em kuştin û ew ereb dîsa li wê derê bin em ê venegerin Şengalê."

**Ezdî ewlehiyê dixwazin**

Penaberên ezdî yên ku li wargeha seyrangeha Şaredariya Parêzgeha Amedê dimînin li ser azadkirina Şingalê her çiqas kêfxweş bûbin jî ev kêfxweşiya wan ne ji bo vegerê ye. Pîrê civaka wargeha ezdiyan Pîr Silêman dibêje ku beriya destpêkirina rizgarkirina Şengalê ew kêfxweş bûne ku wê warên wan bêne rizgarkirin, piştî rizgarkirina navçeya Şengalê ew çav li rê bûne ku gund û warên wan jî bê rizgarkirin, lê belê ew kêfa wan nîvco maye; Lewre gund û warên wan hîn jî nehatine rizgarkirin û ji ber vê yekê ew hê jî nikarin vegerin warê xwe. Pîr Silêman dibêje ku 5 komalgehên wan ên wek; Sîbe Şêx Xidir, Gir Ezêr, Til benat, Til Qesab û Gir Zerik û çend gundên wan hê jî di dest DAIŞ'ê de ne. Pîr diyar kir ku her her yek ji wan komalgehên wan bi qasî Şengalê mal tê de hene û yên rizgar bûne jî hemû xerabûne. Pîr Silêman got: "Ji ber ku ne bi dilê me û ne weke ku me hêvîdikir bû, em gelekî acizbûn û ji ber vê yekê kêfa me di gewriya me de ma. Dîsa jî em bi rizgarkirina Şengalê kêfxweş bûn û xwezî warên me jî bihatina rizgarkirin. Ger ku komalgehên me bêne rizgarkirin, em ê vegerin cih û warên xwe. Lê di vê rewşê de em ê vegerin ku? Wê baweriya me bi kê bê em nizanin. Ger DAIŞ ji warê me dûr nekeve û tang û topên wê bigihîjin me emê çawa vegerin. Ez duh ji Şingalê hatim DAIŞ ji komalgehên ezdiyan top diavêtin Şingalê. Hê jî komelgehên me di destê DAIŞ'ê de ne. Di vê rewşê de gelek fitne, nakokî û cûdabûna hêzan heye. Ezdî jî her hinek xwe bi aliyekî ve digre û ev pirsgirêkeke mezin e."

> Penaberên ezdî yên ku li wargeha seyrangeha Şaredariya Parêzgeha Amedê dimînin li ser azadkirina Şingalê her çiqas kêfxweş bûbin jî ev kêfxweşiya wan ne ji bo vegerê ye.

**Hin dixwazin biçin Ewropa**

Pîr Ahmed jî da zanîn ku ciwanên wan dixwazin biçine Ewropayê û dom kir: "Ger ew bêne ser rêya heqîqetê, Ewropa jî ne warê me ye, lê edî baweriya me bi tu kesan nayê. Em bêgavin. Em nizanin biçine ku derê. Ereb dibêjin Şengal bajarê me ye, lê Şengal bajarê ezdiyan e. Birayên me xwedî li me derketin, lê hê jî gundewarên Şengalê rizgar nebûne. Ji ber vê yekê divê em cîhekî aram ji xwe re bibînin. Jin û zilamên me yên temen mezin dixwazin vegerin Şengalê. Ew jî ji ber ku dixwazin li erdên xwe bijîn û li axa xwe jiyana xwe ji dest bidin. Dixwazin salên xwe yên dawî li wir derbas bikin dixwazin vegerin. Lê jinên xizmên ew kesên ku di dest DAIŞ'ê de hê jî dîl in, û yên ku xizm û mirovên wan hatine qetilkirin naxwazin vegerin Şengal'ê."

Jina bi navê Melkes, jî nerînên xwe wiha anîn ziman: "Em naxwazin vegerin Şengalê. Ger em vegerin, em ditirsin ku me jî bikujin. Ji bo rizgarkirina Şengalê jî em pir kêfxweş nebûn; Lewre dema dengê Şengalê tê guhê me ew deng bixwe jî ji bo me gorek e. Ev peyv û vegera wê birîna me tevdide û jixwe hê jî xizm û dostên me yên di dest DAIŞ'ê de girtî ne hene. Em dixwazin herin Ewropayê. Ji bo ewlehiya me û zarokên me cihê herî baş adifikirîn û xwestina xwe ya derbasbûna Ewropaye tînin ziman."

Xortê bi navê Berkat jî da zanîn ku heta ereb li derdora me hebin, ew naxwazin vegerin Şengalê. Ji ber ku beriya DAIŞ'ê wan ew kuştin, ew ji ereban aciz bûne û edî naxwazin cirantiya wan jî bikin. Xortê ezdî got: "Em dixwazin bi serê xwe li welatekî bi ewle bijîn. Em ji bo derbasî Ewropayê bibin em hatin vir. Ne tenê em, ezdiyên Iraq'ê jî naxwazin vegerin Şengal'ê. Ji ber ku li Ewropayê em ê rehetir bin û emê dikaribin serbixwe bin em jî li hêviya rêyekê çûyinê ne."

**"Êdî cîrantiya destbixwînan nabe"**

Pîr Silêman li ser cirantî û rewşa şûnwarên ezdiyan jî rawestiya û gazinên xwe yên di derbarê van babetan de anî ziman: "Li gundê Herdenê ku ereb û tirkmen jî tê de bûn û wekî me bi kurdî diaxivîn, ji me re gotin netirsin hûn jî bi me re ne û ew di gundê xwe de man. Piştî ku DAIŞ hat, hemû bûn dostên DAIŞ'ê û li me vegeriyan. Serok Mesûd Barzanî gotiye; 'Erebên ku destê wan bi xwînê ne bûye dikarin vegerin. Lê belê destê xwe şuştibin wê çawa bibe? Careke din baweriya me bi wan ciranan nayê. Ew hê jî li wan deran bin em ê çawa vegerin nav wan û bijîn."

**"Em ê heta havînê bisekinin"**

Apê Sebrî ku ji gundê Gir Zere yê Şingalê ye jî grîngî bi yekîtiya kurdan da û anî ziman ku eger kurd yekîtiya xwe durust nekin wê tu kes ji kurdan re nebin dost. Apê Sebrî jî diyar kir ku şûnwarên wan hîn jî ji dest DAIŞ'ê nehatine rizgarkirin û ji ber vê yekê ew hê jî bi azar in ku ne dikarin biçine Ewropa û ne jî dikarin vegerin Şengalê. Apê Sebrî wiha dom kir: "Ez ji we dipirsim çima me xwe li ereba negirt, çima me xwe li tirkan negirt? Me xwe li zimanê xwe girt. Em gelê kurd, pedivî û hewcedariya me bi yekîtiyê heye. Ma ne şerm e ku mirov hina pêşve bixin û hina paşre bihêlin. Ne şerme ku yek ji me birçî yê din têr be. Hewceye em bi gelê xwe bi hêzên xwe û bi war û ciranên xwe yek bîn. Hêzên me yek bin em ê jî hêzdar û di ewlehiyê de bin. Gelê me yek be em ê di nav cudabûna baweriyê de bextewar bin û em û cîranên xwe yek bin em ê di civata mirovahiyê de em ê serbilindbin. Sedemê hemû êş û azarên me kurdan perçebûna me ye. Ger vegereke me hebe, divê bi yekbûyîna kurdan be, da ku careke din em rastî komkujî û fermanan neyên. Şengal, edî warekî xerabe ye û heta saleke din jî sererast nabe." Di dawiya axaftina xwe de Apê Sebrî ragihand ku ew dixwazin heta havînê jî li Amedê bimînin, ger ku rêya Ewropayê vebe ew ê biçin Ewropa û ger venebe jî ewê li benda rizgarkirina şûnwarên xwe bimînin û piştî ku bêne rizgarkirin ew ê vegerin Şengalê.







# Şanoya kurdî li Amedê kom bû



Reyhan Akgün

3. Mîhrîcana Şanoyê ya Amedê di navbera 15 û 22'ê Mijdarê de ji aliyê Şanoya Bajêr a girêdayê Şaredariya Parêzgeha Amedê ve bi diruşma 'Em şanoya civaka demokratîk bi hev re ava bikin' encam da. Mihrîcana ku bi lîstika bi navê 'Sipîmend' destpêkir, bi gellek çalakiyên din ên hunerî dom kir. Di mîhrîcanê de 17 lîstik hatin pêşandan û 5 semîner hatin dayîn. Ji Başûr, bajarên Duhok, Kerkûk û Silêmanî, ji bajarên Rojhilat Kermanşah û Îlam'ê û her wiha ji gelek bajarên Bakurê Kurdîstanê û Tirkiyeyê gellek komên şanoyê beşdarî mîhrîcanê bûn. Di mîhrîcanê de li gel çend lîstikên şanoya zarokan 17 listikên ku bi zimanê kurdî, tirkî û farisî hatibûn amadekirin, hatin pêşandan. Her wiha di mîhrîcanê de gellek panêl û semînerên li ser geşedana şanoya kurdî jî hatin lidarxistin û di van çalakiyan de şanoya kurd hate niqaşkirin.

**Gelê kurd di şer de jî hunera xwe pêk anî**

Gerînendeyê Beşa Şanoyê ya Şaredariya Parêzgeha Amedê Fuat Özdemir di derbarê mihrîcanê û eleqeya wê de nirxandinên xwe ji bo BasNuçe'yê vegot. Özdemir anî ziman ku ji bo şêweyên her çar perçeyên Kurdîstanê bidin ber çavên temaşevanan, wan ji çar perçeyên Kurdîstanê komên şanoyan vexwendine mihrîcanê. Özdemir got: "Li gel Başûr û Rojhilat me ji Rojava jî dû kom wexwendin. Yek ji Cizîrê yek jî ji Efrînê. Lê Walîtiya Amedê destûr neda ku ev kom bên û tevlî mihricanê bibin." Özdemir destnîşan kir ku li gel şer û pevçûnan jî gelê kurd hunera xwe pêk aniye û domand: "Di vê mîhrîcanê de me xwest peyama ku 'Gelê kurd di şer de jî dikare hunera xwe pêk bîne' bide û em bi serketin. Bi vê mîhrîcanê têkiliyên me bi komên din ên perçeyên Kurdistanê re xurt bûn, hin projyen ku wan pêşniyaz kirine hene, lê hê ne diyar in ku em ê wan çawa pêk bînin." Özdemir amaje bi hunerên kuçeyan jî kir û anî ziman ku huner ji kuçeyan pêk tê û ger ku huner ji kuçeyan qut bibe, tu bandoreke wê namine. Özdemir got: "Dema ku mijar gel be û jiyana gel a rojane ya Kurdistanê be, temaşevan lê xwedi derdikevin. Ev mîhrican û lihevcivîna şanogerên çar perçeyên Kurdîstanê bandoreke erenî û mezin li ser şano û şanogerêya kurd kir."

Li Amedê bi destpêka 3. Mîhrîcana Şanoyê ya Amedê pencereyên hunerî ji nû ve vebûn. Mihrîcana şanoyê ku cara sêyem e tê li darxistin temaşevanên şanoyê bi gellek berhemên nû û yên baş ên bi gellek zimanan mest kirin. Lîstikên ku gellek zimanan, panêl û semîner û bi pêşandanên dansê hesreta çalakiyên hunerî ya Amediyan hate bersivandin.

**"Em ê bi hunera xwe tûndiyê nerm bikin"**

Listikvan û Derhinerê Şanoya Şaredariya Parêzgeha Amedê Emin Yalçınkaya jî mihrîcanê nirxand û anî ziman ku mîhrîcanê ne tenê li ser Lîstikên wan, her wiha li ser ew kes û komên din yên beşdarvanan jî bandoreke erenî pêkanîye. Yalçınkaya amaje kir ku berhemên îsal ku hatine pêşandan kurdewarbûne, bi xwe re dan û standinên baş derxistine holê û vê yekê hêzeke baş daye şanoya kurd. Yalçınkaya axaftina xwe wiha domand: "Her çar parçeyên Kurdistanê di pêvajoyek zor û zehmet de ye, siyaset hinek caran gelek tûnd dibe. Lê belê divê em hunermend bi hunera xwe vê tundiyê nerm bikin. Divê em birînên xwe bi hunerê derman bikin." Yalçınkaya ragihan ku êdî di navbera kurdan de sinor bê wate ne, berê wek şanogerekî wan nezanibûye li perçeyen din ên Kurdistanê çi geşedan hebûne, perçekirina Kurdistanê di mejiyan de jî dîwarên stûr daye avakirin, lê bi van çalakiyên hunerî êdî ew dizanin ku li her çar perçeyên Kurdîstanê çi dibin. Yalçınkaya got: "Şanogerên kurd berê nizanibûn li Bakurê Kurdistanê, û perçeyên din ên Kurdistanê çi heye çi tune ye. Me jî nizanibû. Bi mîhrican û çalakiyên hunerî em hev baştir dinasin, pêwendiyên me geş û xurt dibin û diwarên di mêjiyên me de dirûxin."

**Bi mîhrîcanê lîstikvanên kurd hevdû naskirin**

Nivîskar û Derhêner Qutbedîn Sadiqî jî ji BasNûçe'yê axivî û nirxandinên xwe anî ziman. Sadiqî, mihrîcanê ji bo şanoyên çar perçeyên Kurdîstanê jî grîng nirxand û got: "Ji bo geşkirina pêwendiyên perçeyan mihrîcanên wiha pir sûdwer in. Bi vê rêbazê lîstikvanên kurd hev dinasin û di ji bo siberojê dikarin bernameyên hevpar jî biafirînin. Şanoya kurd hê jî neketiye pêvajoya hilberîneriya xwe û li gor min êdî ew pêvajo hatiye." Sadiqî balê kişand ser kêmbûna eleqedariya şanoyê û dom kir: "Pirsgirêka herî mezin ew e ku eleqeya şanoyê di nav kurdan de kêm e. Li amedê nêzîkî 2 milyon kes dijîn; lê belê tenê 2 salonên şanoyê heye. Çanda şanogeriyê kêm e. Ji ber ku wek paytexta Kurdistanê tê dîtin divê li Amedê 10 salonên şanoyê hebûna. Divê Amed bibe navenda bîr û baweriyan û çand û hunerê û ji bo vê yekê li Amedê gelek derfet hene."


Aram Taştekin


Emin Yalçınkaya


Özgür Adıgüzel


Seywan Sadiyan

**Huner bi her awayê êdî sînoran hildiweşîne**

Lîstîkvanê Koma Şanoyê ya Şehîd Yekta Hêvî ya Dîcle-Firat'ê Aram Taştekin got ew gelek kêxweşe ku ji her çar perçeyên Kurdîstanê bi hemû devok û şêwezarên kurdî şano hatine pêşwazîkirin. Taştekin wiha got: "Kurdîstanê kirine çar perçe, lê bi hunerê sînorên van perçeyan têk çûne. Huner, êdî sînoran hildiweşîne. Têkiliya di navbera her çar perçeyên Kurdîstanê de hin diçê xurtir dibe. Ev jî bi estetîka hunerê çêdibe. Ji bo siberojê hêviyek xweş dide mirov. Bi mîhrîcanê em kesên ku bi şanogeran re têne cem hev û şêwe û şiyanên hev parve dikin. Ev yek bandorek erînî pêk tîne. Li gor salên borî cudahiyek heye. Wek nimûne: Ev yekem car e ku min bi devoka Kelhorî lîstikek temaşe kir."

**Pêşangeha Sadiyan xurdeyan zindî dike**

Peykersazê Rojhilatî Seywan Sadiyan ku li Amedê bi cih bûye û bi berhemên xwe yên ku hunerên rojane û kevnar di sûret û teşeyên mekanîk de li hev digoncivîne bi hevkariya Weqfa İsmail Beşikçi 3. pêşangeha xwe li dar xist. Pêşangeha ku ji ber li eywanên Şaredariyê ji xwe re cih nedît, li Kuça Hunerê di dukaneke vala de hate pêşandan. Di derbarê berhemên xwe yên ku ji xurdeyên hesinî sûret û teşeyên kevnar û rojane û siberojê afirandiye de Sadiyan da zanîn ku piştî pêşangeha li Navenda Çanda Cegerxwîn a Amedê û ya li Zanîngeha Artuklu ya Mêrdînê, wî hemû berhemên xwe di vê pêşangehê de pêşan daye û gellek ji berhemên vê pêşangehê berhemên nû ne. Sadiyan anî ziman ku peykersazî li mezopotamyayê yek ji hunerên herî kevnar e, her çiqas piştî belavbûna ola Îslamê ev huner paşde ketibe jî vê yekê grîngiya peyker têk nebirî ye. Sadiyan ji hesinên xurde afirandina berhemekê wek şêweyeke nû nirxand û got: Huner wek alfabeyê ye. Kîjan hunermend bi wê alfabeyê peyveke nû biafirîne ew şêweya xwe jî diyar dike. Min jî ji xurdeyan şêweyeke nû afirand û ev şêwe ji alî gellek hunerhezan ve tê hezkirin." Sadiyan ji ber baldariya hunerhezan jî kêfxweşiya xwe anî ziman vê yekê wek şanaziya hunera xwe nîşan da.





# SiNEMARDiN

## Mîhrîcana bajarê bê sînema!



Tekoşîn Kew

Hin bajar hene ku nexşeya çand û hunera civaka şêniyên xwe di xêzên diwarên xwe de dihonînin û rêzdariya xwe ya ku bi hezarên salan bi mazûvaniya xwe berencam kirî ye, di demên nûjen de bi şêwe û qalibên hevdem ji nû ve hildiberînin. Bajarê Mêrdînê jî yek ji wan bajarên mazûvan e û niha bi mihrîcanên sînemayê xwe li huner û şêweyên nû digoncivîne. Mîhrîcana Fîlman a Mêrdînê ya Navneteweyî 'SineMardin' ku 10 sal berê wek mihrîcana kurtefîlman destpê kir, di sala dûyem de bi navê 'Mîhrîcana Fîlmên Bajarê bê Sînema' berdewam kir û di nav salan de bû mihrîcaneke gihîştî ku mazûvniyê ji fîlm û sînemagerên grîng re dike. 10. Mîhrîcana Fîlman a Mêrdînê ya Navneteweyî îsal di 13'ê Mijdarê de destpê kir. SineMardin, îsal hewl dide ku di qada navnetewî de çalakiyên xwe yên sînemayî û bajarê Mêrdînê bide nasin. Bi vê mebestê sînemagerên navdar, li gel fîlmên xwe yên grîng hatine vexwendin.

**SineMArdin mihrîcaneke têr û tije ye**

Mîhrîcana Fîlman a Mêrdînê ya Navneteweyî SineMArdin ku di 13'ê Mijdarê de bi fîlmê Derhênerê kurd Batin Xobadî yê bi navê 'Mardan' destpêkir û di 20'ê Mijdarê de bi dawî bû, bi baldariyeke pir mezin hate pêşwazîkirin. Di vê mihrîcana îsal a ku 35 film, kurtefîlm, vîdeoart û belgefîlmên grîng hatin pêşandan de sînemager û hezkiriyên sînemayê hatin cem hev û di warê hunera 6. de danûstendinên ramanî kirin. Fîlmên ku bi zimanên cuda yên wek; Kurdî, tirkî, erebî û îngîlîzî hatine kêşandin, ji bo temaşevanan bi binnivîsan hatin pêşandan. Ji salên berê cudatir mihrîcana îsal rastî eleqeyeke pir mezin hat û di hemû pêşandanan de hol tije bûn. Di derbarê mîhrîcanê de Koordînatorê Mîhrîcana SineMArdinê Hêlûn Firat anî ziman ku di mihrîcana îsal de wan helw daye ku fîlm û derhêneran bi hezkiriyên sînemayê yên Mêrdînî re bînin cem hev da ku derhêneran bêtir bikêşînin Mêrdînê. Firat got: "Armaca me ew e ku em dîrok, mîmarî û çand û hunera Mêrdînê bi derhêneran bidine nasîn da ku fîlmên xwe li Mêrdînê bikêşînin." Firat da zanîn ku hola sînemayê ya ya Mêrdînê bi 150 palgehan avakirine û dom kir: "Li Tirkiyeyê yekem car e ku li bajarekî hem mîhrîcan tê lidarxistin û hem jî bi navê mîhrîcanê holên sînemayê têne avakirin. Li tu bajaran taybetiyeke wiha tune ye."

**Mêrdîn, Holywood a Kurdistanê ye**

Hêlûn Firat diyar kir ku wan xwestiye ku di 10 saliya SineMArdin'ê de ew mihrîcanê bi kêf û bi coş bidin pîrozkirin, lê belê ji ber ku rewşa Tirkiyeyê pir guherbar e, beşdarî ne di asta ku wan pêşbîn kirî ye de bûye. Firat dom kir: "Vê rewşê bondarek neyênî li mihrîcanê kir. Pêwîst bû havînê ev mihrîcan pêk bê, lê belê ji ber awartebûna rewşê me du caran dîroka destpêka mîhrîcanê taloq kir." Hêlûn Firat balê kêşa ser deştebajariya Mêrdînê û anî ziman ku li vê derê mirov dikarin di hemû demsalan de jî kêşana fîlman bikin. Di vî warî de Mêrdîn bajarekî gelekî taybet e û di dinyayê de jî divê cihe wê jî taybet be. Firat anî ziman ku qelîteya ronahiya Mêrdînê di asta ya Holywoodê de ye û got: "Ji ber vê yekê, divê ev taybetiyên Merdînê di sektora sînemayê de bêne bikaranîn. Taybetiya ronahiya bi qelîte ji bo tîmên fîlman derfeteke bêhempa ye. Ger ku li Mêrdînê derfetên kêşanên fîlman zêde bibin, ev yek wê bandoreke pir erênî li ser tûrîzma bajar jî bike. Mêrdîn ji bo kêşana fîlman derfetên baş ên wek; peydakirina leystikvanan, sirûşt, binesaziya teknîkî pêkan dike."

**Navenda sînemageriyê: Mêrdîn**

Firat amaje bi sînemaya Rojhilata Navîn kir û diyar kir ku ew dixwazin awirên xwe li ser herêma xwe tûj bikin û hanî ziman ku potansiyeleke Mêrdînê ya taybet heye ku dikare ji bo sînemageriya Suriye, Iraq û Îranê bibe navend. Firat da zanîn ku di 10 salên dawî de ji Herêma Kurdistan, Îran û ji Îraqê serlêdan çêbûne û got: "Em her dixwazin ku filmên ve heremê hilbijêrin. Bi vê mebestê me Macîd Macîdî, Selam Salavatî, Bahman Gobadî û gellek sînemagerên Îranê yên kurd û turkmen vexwend mihrîcanan û tevlî mîhrîcana me bûn. Ji Tirkiye yê jî Reha Erdem, Huseyin Karabey, Emin Alper û heta Zeki Demirkubuz û gelek derhênerên din hatin Mêrdînê. Gelek pirs ji wan hatin pirsîn û wan jî bersiv dan. Me baştirîn derhêner û hunermendan vexwend.

**SineMArdin êdî li Tirkiyeyê navdar e**

Koordînatora SineMArdinê Hêlûn Firat di berdewamiya axaftina xwe de anî ziman ku di SineMArdinê de xelat nayêne dayîn û kesên ku serî li mîhrîcanê didin ji vê yekê haydar in û SineMArdin bi vî awayî di nav mîhrîcanên Rojhilata Navîn de cîhê xwe girtiye. Firat destînaşan kir ku ji ber ew girîngiyê didin hunerê, xelat nadin û got: "Mîhrîcana me li Tirkiyeyê êdî navdar e. Di destpêkê de em rastî gellek astengiyan hatin. Ew çend ku kamêraya me li Qoserê, ji koxa mirîşkan derxist û me ji Îzmîrê hosteyek anî û ew da çêkirin. Armanca me ew bû ku Mêrdîn bibe navend an jî dexta sînemayê û ji sînemahezan re bibe warê afirîneriyeke nû. Êdî mîhrîcana me li Rojhilata Navîn, Ewropa û Rojava xwedî grîngiyek e."

**Taybetmendiya Mêrdînê ji bo sînemayê**

Firat diyar kir ku Bajarê Mêrdînê ji bilî dîrok û kevnewariya xwe, bi rengê kevirê xwe jî xwedî taybetmendiyeke giranbûha ye û rengê kevirên wê, ji bo ronahiyê pir bala derhêneran dikêşe. Firat wiha domand: "Ger ku derhêner li Mêrdînê fîlmekî bikêşînin, ji ber ku ronahiya Mêrdînê pir bi qalîte ye, pereyên ku didin ronahiya teknîkî di dest wan de dimîne û ev jî budceya fîlm kêm dike. Qelîteya ronahiya Mêrdînê û ya Holywood û Bolywoodê di heman astan de ne. Ev ji bo me bû palgehek. Me pala xwe da vê taybetmendiyê û êdî ji bilî me Mêrdîn bala herkesî dikşîne. Ez dikarim bêjin ku hin derhêner tenê ji bo ronahiyê têne Mêrdînê û hin leystikvan jî tenê ji bo ku kevnariya bajar bibînin têne Mêrdînê. Ev me bextewar dike ku em dibêjin me karekî baş bi rêvebiriye."

**Di pêvajoya SineMardinê de sûda gel**

Firat ragihand ku ew bi SineMArdinê her wiha xizmeteke civakî jî pêk tînin û di heman demê de sûdeke mezin ji mihrîcanê werdigirin. Firat diyar kir ku ew hewl didin ku bi ser SîneMArdînê hêza şîrovekirin û lêpirsîna kevneşopiyê ya temaşevan û hunermendan berz bikin û wiha domand: "Karê me ne polîtîk e, lê belê ji polîtîkayê bi bandortir e. Gelek tişt hene ku bi siyasetê dernakevin holê û nayê vegotin, lê belê bi huner û sînemayê tê gotin. Wek nimûne; Temaşekirin û nîqaşkirin. Ez li her derê Tirkiyeyê û Kurdistanê xebitîme, lê min wekî li tu deverî temaşevanên wekî yên Mêrdînê baldar û rexnegir nedîtime. Ez gelek kêfxweşim ku her kes li hember leystikvan û derhêneran rasterast xwe bîne ziman û rexneyan li wan bikin. Sûda herî mezin a mihrîcanê jî ev e, ne piştgiriya aborî ye. Jixwe aborî bi beşdariya mêvanan bi pêş ve diçe."

Mîhrîcana Fîlman a Mêrdînê ya Navneteweyî SineMArdin ku di 13'ê Mijdarê de bi fîlmê Derhênerê kurd Batin Xobadî yê bi navê 'Mardan' destpêkir û di 20'ê Mijdarê de bi dawî bû, bi baldariyeke pir mezin hate pêşwazîkirin.





# Divê muzîka me ji êşê rizgar bibe

Zerya Nergis

Hunermend Serhat bi albûma xwe ya yekem a bi navê "Lamekan" ku bal kişand, dest bi albuma duyem kiriye. Ertuna dibêje ew muzika bajarî û ya nûjen diafirîne. Serhat rexneyê li muzîka ku bi giranî tê de zimanê êş û mexduriyetê heye rexne dike û wiha dibêje: "Ziman li ser civakê bandorekî gelek mezin dike. Şer xilas be jî, paqijkirina bandora wê re demeke dirêj lazim e. Piştî şeran civak bi saya hunerê tê ser xwe, ev li civaka me berevajî ye. Ji xilasbûna trawmaya şer a li ser kurdan demek dirêj lazim e."

Hunermend Serhad Ertuna ku ji zarokatiya xwe di nav muzîk û hunera de ye, cara yekem sala 1994'an de li Stenbolê dest bi dersên muzikê dike. Piştî vê perwerdeyê li Şanoya Bajêr ya Amedê dest dixebite. Ertuna yê ku heft sal lîstîkvanî dike, bi wê re berdewama perwerdeya şan û muzîkê distîne. Ertuna dibêje ku bi lîstîkvaniya şanoyê de bikaranîna deng girîng e û bi şanoyê re fêrî bikaranîna dengê xwe bûyê û şanoyê hêza wî bilind kiriye. Piştî vedigere Stenbolê û di nav xebatên Navenda Çanda Mezopotamya'yê (NÇM) de tevlî Koma "Jiyana Nû" dibe. Ew li NÇM'ê bi şanoyê re xebatên muzîkê xurt dike û bi projeye Dîvana Dubeytî re bi temamî vedigere muzîkê. Ertuna ku dema di bin banê NÇM'ê de dixebite diçe derveyê welat û li wir albûma xwe yê yekem Lamekan diderxine. Ertuna ji bo albûma xwe dibêje; "Ev albûm daneheva demekî dirêj bû, ku li cem min kom bûyê."

Hunermend Ertuna bal dikişîne ku muzîka wî, nûjen û bajêrî ye û ew bi temamî li dijî muzika klasik e. Ertuna nikarê navekî li muzîka xwe denye: "Ez naxwazim muzika xwe di nav teşeyekê de bişidînim û naxwazim bandora wê li ser xebatên min çêbibe. Ji ber vê yekê ez di vê demê de xebatên ceribandinê dikim. Ne muzîka xwe bêxim di nav qilifekê, ne jî dixwazim muzîk di nav demê de ji xwe re qilifekê bibîne. Ez bêtir ji muzika bajarî û nûjen hezdikim. Ez dixwazim bi vî awayî berdewam bikim."

**"Li Ewropa rêyên pêşkeftinê hene"**

Ertuna balê dikişîne ku li welatên biyanî ji bo xebatên hunerî û ji bo deruniya hunermend û karê wan gelek rewşeke neyînî heye. Diyar kir ku wek hemû hunermendên biyanî ew jî bi zahmetî karê xwe dike û wiha berdewam kir: "Kesên ku ji xaka xwe dûr be, ji hêst û kûrbûna welatê xwe jî dûr dikeve. Ev jî li ser afirandinê bandor dike. Dema ku hûn ji xaka xwe dûr bin, hûn xebatên xwe bi zahmetî digihîjînin civaka xwe. Him li Ewropa'yê hunera kurd nayê nasîn û tu dixwazî hebûna xwe bidî nîşan, him jî civaka te yê ewqas ji te dûr e, dixwazî dengê xwe bigihijîni wan. Ji bilî wî pêkanîna muzîkê li Ewropa'yê baş e û pêşketin pêk tê. Berî her tiştî hûn di bin zîhniyeta qedexekirinê ve di bin rewşên tund de karê xwe pêk naynin. Fikrên xwe bê tirs û bi azadî tînin ziman. Ev ji bo pêşketina hunerê gelekî giring e. Ya duyem, ev hêsanî li vir di derbarê hunêrê de pêşkeftinê tîne. Dema ku sansûr nîn be û azadî hebe, fikir jî derdikeve holê. Ji bo hunerê Ewropa civakekê baş e û li hunerê xwedî derdikeve. Ev jî hunerê pêş dixe."

**"Bi çavekî polîtîk li muzîkê tê temaşekirin"**

Ertuna di derbarê saziyên hûnerê de dibêje, akademî û saziyen ku bi alîkariya şaredariyan vebûne, derfetên mezin ji bo hunêrhezan re peyda dikin: "Ev derfet ji bo pêşeroja hunerê veberhênanekê girîng e. Di nav demê de dê xebatên baştir derkevin holê."

Ertuna bal dikişîne ser saziyên hunerî ku gelek kêmasiyên wan hene: "Saziyên me bêhtir li ser du mijaran nêzikê hunerê dibin. Ya yekem polîtîka, ya duyem jî klasîk in. Ev bi awayekê tê fahmkirin, bandora şer, bişaftina çandî û refleksên li hemberê wî derdikevin holê ev tê fahmkirin. Lê pirsgirêk ev yek çiqas rast tê pêkanîn. Bêguman ev şewqa xwe dide gel. Gel ji vê yeke hez dike. Lê belê ew tişta ku ji aliyê gel ve tê qebûlkirin nayê wateya başbûne. Divê em vê bifikirin. Hunera me ji xwe di nav du mijaran de asê bûye. Ji ber vê yekê sînorên wê teng in. Hunera ku di saziyan de pêk tê, gelek rastî mudaxaleyê dibe. Navbera tişta difikirin û yê derdikeve holê de gelek cudahiyên mezin hene. Ev tişt dibe sedema şikandina gelek hunermendan û wan dûrî saziyan dixe. Ev tişt red kirin û sansûrê jî bixwe re tîne. Gerek e hessasiyet û pîvan jî hebin. Lê belê gerek e ev hemû kesan jî himbêz bikin. Ev hemberzkirin hunera kurd paş ve nabê berevajî bêhtir bihêz dike. Şewqa vê li ser muzikê gelek e. Yên ku di nav saziyan de diminîn, xebatên polîtîk, sloganîk û rûbarî dikin. Ev rewş afireneriyê disekinîne."

**"Armanc xebatên mayînde ye"**

Ertuna dibêje ku albûma wî ya yekem ku sala borî gihişt guhdaran û olaneke erenî daye. Her wiha dibêje ku bi taybetî derdorên hunerê yên alternatîf bertekêk gelek baş nîşan dane û rexnegirên kurd gelek tiştên baş li ser nivîsandine. Bi derketina albûmê sala borî di nav kategoriyên albûmên baş de wek namzet hatiye nîşandan û lê di nav civaka hunera kurd de cihekî baş nedîtiye. Ertuna wiha got, "Bi hemu kêmasiyan ve em li rastî gelek bertekên hatin. Em rexneyên êrenî û yên nêyînî hemû bilind dinirxînin û bi wî awayê bihêztşir dibin." Hunermendê ku sala borî albûma yekem ya bi navê Lamekan derxistiye, niha dest bi xebatên albûma duyem kiriye. Ertuna amadekarî dike ku derkeve hemberê guhdaran. Ew di derbarê xebatên albûma xwe de wiha diaxife: "Di serî de ji hêstên xwe û ji nav xwe derdikevim rê. Û tiştên ku ez dijîm, bi tiştên ku civak dijî re dikim sentezê. Ew tiştên derdikevin holê dixwazim wan bi awayekî azad û bedew ji nîşanê civakê bidim. Armanca min ew e ku xebatên mayînde biafirînim û xwe bêtir pêşvebixim."

> "Divê pîvanê muzîkê jî hebin. Lê belê gerek e muzîk hemû kesan himbêz bike. Ev hunera kurdî divê ber bi paş ve nece, berevajî bêhtir bihêz bibe. Hunermendên ku di nav saziyan de kar dikin, xebatên polîtîk, sloganîk û rûbarî dikin. Gerek huner li hember vê yekê bisekine."



**"Karên sivik tên kirin"**

Hunermend Ertuna diyarkir ku di muzîka kurdî de di salên borî de destanên lehengiyê bi awayekî bedew dihat bikaranîn: "Lê îro veguheriye modayê û hevokên pê hev rêz buye, bi riste û melodiyên sivik gelek stran derketine û temenê van stranan jî gelekî kin e."

Ertuna wiha berdewam kir: "Yên bi narîniya hunerê jî pêk hatine hene. Lê belê ewqas qirêjî heye ku mixabin ev jî di nav vê aloziyê de wenda dibin. Gelek hunermend li ser vê prîm dikin. Derdê wan ew e ku çiqas zêde van nirxan bikarbînin ewqas dikarin bijîn. Rewşeke wisa xuya dike ku ji bo kar hewceyên wan bi şerê heye. Di stranan de heman hevok, heman, riste û bi heman melodiyan cardin dipijin û diderxînin pêş me. Heman mijarên sivik in. Ew tişta ku em berdikevin, ji bo yên ku karê xwe baş dikin, li gor vê derfet nabînin. Ewqas karen sivik trajediyekê mezin e. Jixwe me guhê civakê hînê vê muzîkê kir. Di nav vê uslûbê de zimanê êş kişandinê û mexduriyetê li ser deruniya civakê gelek bandorekê neyînî dike. Lewre ku şer xilas be jî wê paqijkirina bandora wê gelek dem bigire. Lêbelê gerek e berewajî be û piştî şer, civak bi tesîra hunere were ser xwe."